Bas Nûçe
HERDEM RASTÎ
ISSN 2148-5305
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 94 14 - 20 Adar 2016 basnuce.com

Suna Alan
## Dîaspora huner-mendan pêş dixe
R16





Li Kurdistanê bihara serxwebûnê

# Ji bo reforman piştgiriya navnetewî

Li RHK'ê çûnûhatina dîplomasiyê û pêngavên rapirsiyê berdewam dikin. Nûnerên weletên G-7 ku serdana Hewlêrê kirin, soza piştgiriya aborî dan û ji aliyekê ve jî Desteya Destpakî ya Herêma Kurdistanê xebatên xwe yên ji bo pêşîgirtina gendeliyê berdewam dike.

Serokê HRK'ê Barzanî di civînek li gel kadroyên PDK'ê de diyar kir ku xwîna vê carê rijiya ye ji bo serxwebûnê ye û got: "An em ê serbixwe bibin an jî em ê tev de jinav biçin." Barzanî amaje bi wê yekê kir ku ti hêz nikare destkariya mafê diyarkirina çarenûsa RHK'ê bike.
R 02-3

## Fezleke teqemeniya li bin Meclîsê ne
R06

## 15 hezar Peşmerge diçin Mûsilê
R07

## Edebîyato bêşar, şaro bê edebîyat
R12

## Zarema bihara Avestayê ye!
R15



Hakim Ehmed Enwer:
## Rê li gendeliyê tê qutkirin

Serokê Desteya Destpakiya Herêma Kurdistanê Hakim Ehmed Enwer, ji BasNûçe'yê re behsa rêgirtina li ber gendeliyê, çalakkirin û bi cihkirina biryarên di derbarê gendeliyê de kir. Li gor Enwer Desteya Destpakî û ev saziyên din bi rêya Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê li gel Serokê Herêma Kurdistanê di nava hemahengiyê de bin.
R08-9

## "Pesnê kurdan didin, lê çekan nadin"

Rawêjkarê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî got, "Cihê mixabiniyê ye ku hemû alî pesnê kurdan didin û dibêjin ew karîgertirîn hêz in li dijî DAIŞê, lêbelê dema mijar tê ser çekdayina kurdan, ku me çend caran daxwaza çekên giran kiriye, ti kes alîkarî nade."
R03



## Li Kurdistanê bihara serxwebûnê

# Ji bo reforman piştgiriya navnetewî



Baran Şaxî

Mijara rapirsiya serxwebûnê di salvegera raperîna Başûrê Kurdistanê de dîsa weke rojevek germ derdikeve pêş. Rêveberiya navendî ya Bexdayê li gel birîna bûtceya Herêma Kurdistanê, di şerê li dijî DAIŞ'ê de jî piştgiriya pêwîst jî neda. Ji aliyê din ve jî rêveberiya İbadî jî hewldide li hikûmetê kursiyên ku dikeve para kurdan ji wan bistîne. Di vê biharê de hizra, li ser hîmê biratiyê birîna pêwendiyên ligel Bexdayê û ji bo serxwebûnê pêkanîna rapirsiyê derdikeve pêş.

Dengvedana gotinên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî yên ku di civîna ligel kadroyên PDK'ê de gotibû: “Ez naçim Îran û Enqerê jî bo li gor dilê wan biaxivim. Me xwîn ji bo serxwebûnê rijandiye. Emê mafê xwe yê serxwebûnê ti caran nekin mijara mûzayedeya siyasî“ jî didome.

Ji aliyê din ve lêgerînên ji bo çareserkirina qeyrana siyasî û aborî ya nav RHK'ê jî berdewam dikin. Hewldanên ji bo çalakkirina parlamento û hikûmeta herêmê ji ber şertên Tevgera Goran, bi encam man. RHK li ser daxwaz û zextên saziyên civaka sivîl û gel, ji bo avakirina hikûmetek berfireh, gavên xwe leztir dike. Di vê çarçovê de hevdîtinên di navbera PDK'ê û YNK'ê ji nûve destpêdikin. Ji aliyê din ve jî tê çaverêkirin ku piştî çalakkirina parlamento û hikûmetê, proseya çaksazî û tekoşîna li dijî gendeliyan jî bileztir bibe.

Herwiha amadekariyên operasyona Mûsilê jî berdewam dikin. Artêşa Iraqê di nava hefteyê de hêzek nû şande devera Mexmûrê û bi vî awayî hejmara leşkerên li herêmê gehişte tumenekê. DAIŞ'ê jî ji bo sabotekirina amadekariyên operasyonê êrîşên xwe yên li hember eniya Mexmûr û Guwerê zêde kiriye. Hêzên Pêşmerge piştî eniya Keskê ya bakûrê Mûsilê, li eniya Mexmûr û Guwerê jî êrîşekê din ê DAIŞ'ê jinav birin.

### “Wê çaksazî pêk bên“

Trafîka dîplomasiyê ya Hewlêrê jî berdewam dike. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li gel şandekî hevbeş a Netewên Yekgirtî, Yekîtiya Ewrupa û welatên Koma G-7 û Banka Cîhanî civiya ku ji Jan Kubis Nûnerê Taybet yê Sekreterê Giştî yê Rêxistina Netewên Yekgirtî li Iraqê, Stuart Jones Balyozê Amerîka, Frank Beyker Balyozê Brîtanya, Somîo Yuway Balyozê Japonya, Patrik Simont Serokê Şanda Yekîtiya Ewropa li Iraq, Robert Biset Reveberê Karubarê Balyozxaneya Kanada, Milan Simandil Cîgirê Birêveberê Balyozxaneya Almanya li Iraq û Patrik Mura Cîgirê Balyozê Îtalya li Iraqê û Alan Gibxat Konsolê Giştî yê Fransa li Hewlêr û Robert Cewd Rêveberê Banka ya Cîhanî ya Iraqê pêkhatibû.

Di civînê de Barzanî got: "Ji aliyê darayî ve ti aliyekê di şerê DAIŞ'ê û alîkariya koçberan de ti aliyekê piştgirî û hevkariya Kurdistanê nekir. Daketina nirxê petrolê jî qeyrana darayî û rewşa Herêma Kurdistanê girantir kir. Em ji welatên G-7 û Yekîtiya Ewrupa daxwaz dikin ku ji bo şerê DAIŞ'ê û û alîkariya koçberan de û her wiha ji bo bicîhkirina çaksaziyên bingehîn ên aborî de alîkariyê bidin Herêma Kurdistanê.“

Derbarê proseya çaksazî û çareserkirina pirsgirêkên siyasiyên Herêma Kurdistanê de jî Barzanî da zanîn ku ew rijd in li ser çaksaziyê û bi hemû şiyanek ve wê hewl bidin ku proseya çaksaziyê serbikeve û li ser rêya çaksaziyê kesek jî nabê asteng û li gel aliyên siyasiyan jî berdewam dibin bo ku qeyrana siyasiya Herêma Kurdistanê bê çareserkirin.

Nûnerê Taybetî yê Sekretrê Giştî yê Rêxistina Netewên Yekgirtî Kubis jî ragihand ku ‘civaka navdewletî derbarê qurbanîdan û hewldanên Herêma Kurdistanê yên di şerê li dijî terorîstan û hewandina hejmarekî zêdeyê koçberan de agahdar e.’ Kubis her wiha diyar kir ku ew agahdarê rewşa dijwar a darayî ya Herêma Kurdistanê ne û bi girîngiyê ve behsa projeya çaksaziyan kir û ragihand ku civaka navdewletî amade ye ji bo derbaskirina qeyrana aborî alîkariyê bide Herêma Kurdistanê. Di civînê de Rêveberê Banka ya Cîhanî ya Iraqê jî Barzanî ji hewlên Banka Cîhanî ya ji bo alîkariya Herêma Kurdistan û Iraqê agahdar kir.

### Yasîn Mahmud: Barzanî mafên rewa yên gelê Kurd ji nûnerên G-7 re vegot

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di civîna li gel nûnerên welatên G-7, NY û YE de behsa qeyrana darayî ya li Herêma Kurdistanê kir û diyar kir ku jiber qutkirina bûdceya herêmê ji aliyê Bexdayê, şerê DAIŞ'ê û hatina hejmarek zêde yê koçberan Herêma Kurdistanê qeyrana aborî dijî. Barzanî diyar kir ku ji bo derbaskirina vê qeyranê ti kesî alîkarî nedaye Herêma Kurdistanê.

Mamostayê Zanîngeha Selahadînê û Akadamîsyen Yasîn Mahmud ji BasNûçe re axivî û hevdîtina Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya ligel nûnerên G-7, NY û YE nirxand. Mahmud diyar kir ku Barzanî him di dema serdana welatên derve de û him jî di hevdîtinên xwe yên ligel berpirsên dewletan de her dem behsa mafên gelê Kurd dike û daxwaza serxwebûna gelê kurd dike. Ji bo neheqiyên ku di dîrokê de li dijî gelê Kurd pêk hatine dubare nebin û herwiha ji bo di vê heyamê de Kurdistan bikare qeyranan derbas bike, hêvî û bendewariyên xwe tîne ziman.

### “Welatên G-7 alîkarî dide RHK'ê”

Mahmud got: "Barzanî di qada navdewletî de doz û dîplomasiya kurdan gavek din jî pêş ve bir" û bal kêşande ser wê yekê ku di dema serdana welatên cîran û herwiha welatên din de jî Serokê RHK'ê Barzanî weke serokê dewletê tê pêşwazî kirin. Mahmud wiha berdewam kir: "Geşedanên li Rojhilata Navîn tên jiyankirin û herwiha şerê DAIŞ'ê bala cîhanê kêşa ser herêmê. Kurd êdî naxwazin bibin goriyê guhertinên sûnnî yên herêmê û berjewendiyên herêmên zilhêz. Ji aliyê din ve, hêzên Rojava û yên mezin, baş têgehiştine ku, li Rojhilata Navîn hevpeymana herê bi hêz kurd in. Hêzên kurd bi roxmê nebûna pêdavîstiyên leşkerî jî li Başûr û Rojava, li dijî dirindetirîn rêxistina terorîstî ya cîhanê serkeftinek mezin tomar kirin û di wateyekê de jî ji bo rûbirûbûna şerê terorîstan, barê tevahî cîhanê hildane ser milên xwe."

Akademîsyen Yasîn Mahmud diyar kir ku nêrîna welatên cîhanê û bi taybet jî nêrîna DYE û YE'yê ya ji bo gelê kurd û pirsa Kurd li herêmê hatiye guhertin û got: "Bi bihêzbûna pêgeha kurd li herêmê, bergeh û nêzîkbûna hêzên navnetewî jî guherî. Em dikarin vê rastiyê ji serdanên berpirs û serokên dewletên mezin ên bo Kurdistanê de jî û herwiha ji hebûna konsolxane û nûnertiyên welatên mezin ên li Herêma Kurdistanê jî fam bikin. Dîsa di serî de DYE, Kanada, Elmanya û Fransa, gelek welat behsa girîngiya pêwendiyên xwe yên ligel herêma Kurdistanê dikin û dixwazin rast e rast alîkariyê bigehînin Pêşmerge. RHK'ê jî ji bo derbaskirina qeyrana darayî daxwaza piştgiriya navnetewî dike. Mirov dikare civînên nûnerên G-7, NY û YE'ê yên ligel berpirsên RHK'ê jî di vê çarçoveyê de binirxîne. Heger ev hêz bibînin ku RHK'ê di mijara çaksazî û paksaziyan de dilsoz e, bêguman wê bixwazin alîkarî bidin."

### ‘Derbazkirina qeyrana darayî pêkan e’

Mamostayê Zanîngeha Selahadînê Yasîn Mahmud daxuyand ku şansê serkeftina projeya reform û çaksaziyan a Hikûmeta RHK'ê heye û got: “Serok Barzanî piştgirî dide proseyê û ji bo vê yekê jî prensîbên xwe diyar kir. Kurdistan xwedî ax û jêderên dewlemend e. Kêmasiya herî mezin ê hikûmetê we bû ku di warê darayî de pişta xwe bi bûdceya Bexdayê û dahata petrolê ve girêda. Lêbelê divêya bû ku di serî de çandinî û ajaldarî, di kerta pişesazî, bazirganî, geştyarî û kertên din de jî geşedan û kar heba û evkert bihatana pêşxistin. Jiber ku ev nebûn, qeyrana aborî bi êş dibe. Lê belê berpirsên hikûmetê û herwiha Serok Barzanî jî dibêjin ku ev rewş demkî ye û dikare bê derbaskirin. Hikûmet di nava xwe de kar dike ku ji bo çaksaziyan lêçûnên xwe kêm bike û herwiha wezaret û saziyên ku lêçûnên wan giran in jî kêm bike, yan jî biçûk bike. Herwiha şêniya Herêma Kurdistanê 6-7 milyone lê milyonek 600 hezar karmend heye. Hikûmet hewl dide di proseya çaksaziyan de bêyî ku karên xwe rawestîne hejmara karmendan jî kêm bike. Ligel pêkanîna projeya çaksaziyan, derbaskirina qeyrana darayî jî pêkan e."

### Goran li ser berdewama qeyranê rijd e

Li gel van geşedanan Parlamena Kurdistanê duwemîn civîna serokê fraksiyonên partiyên pêk anî. Lê belê ji ber ku Tevgera Goran li ser şert û mercên xwe bi rijd bû, civîna parlamenê negehişte ti encamekê. Li ser vê yekê parlamenterên Tevgera Goran û Bizotneweya Îslamî di parlamenê de çalakiyek du rojî pêk anîn.

Derbarê mijarê de rojnamevan Hoşmend Sadiq ku civînên parlamenê ji nêz ve dişopand ji BasNûçe'yê re ragihand ku piştî civîna hefteya borî, ji bo derbaskirina qeyranan di alî ji civîna duwem bi hêvî bû. Sadiq got: "Dihat hêvîkirin aliyên siyasî bêyî ku şertan bidin pêş, nêrîn û pêşniyazên partiyên xwe bînîn û li ser vê yekê bigehin rêkeftinekê. Lê belê Tevgera Goran şert dane pêş û rijd bû ku divê Serokê berê Yûsif Mihemed carek din weke Serokê Parlamenê beşdarê rûniştinan bibe. Ev şert di serî de ji aliyê PDK'ê û ji aliyê partiyên din ve jî nehate qebûlkirin. Ji ber vê yekê Tevgera Goran li parlamenê grevek du rojî pêk anî û daxwaz ji partiyên din jî kir ku piştgiriyê bidin wan.“

Rojnamevan Sadiq diyar kir ku gelê herêmê dixwaze parlamento ji nûve çalak bibe û ji bo derbaskirina qeyrana darayî û aborî bibe navenda çareseriyan: “Serokê RHK'ê Barzanî û PDK jî ji bo ji nûve çalakbûna parlamenê û dest bikarbûna hikûmeta bigehfireh hewldanên xwe yên dawî kirin. Di vê mijarê de dem her diçe teng dibe û we diyare ku di vê rewşê de ne gengaz e ku carek din hikûmeta bigehfireh carek din dest bi kar bike. Lewma jî PDK ji bo pêkanîna hikûmetek piranî, dixwaze di serî de ligel YNK'ê û ligel partiyên din jî civînan pêk bîne. Têpayîn ku di rojên pêş de bi vî armancî, berpirsên PDK'ê û YNK'ê ji nûh ve kom bibin."

### Li Keskê û Mexmûrê êrîşên DAIŞ'ê

Li aliyê din artêşa Iraqê ji bo amadekariyên operasyona Mûsilê hêz dişîne Mexmûrê. Di nava hefteya borî de yekîneyên nû gehiştin herêmê û û hejmara leşkeran daket 10 hezaran. DAIŞ'ê jî bi armanca sabotekirina amadekariyan eve du hefte ne êrîşê eniya Mexmûr û Guwêrê dike. Hêzên Pêşmerge êrîşên dawî yên DAIŞ'ê jî jinav bir.

Şêwirmendê Serokê RHK'ê Kîfah Mehmûd jî da zanîn ku Wezareta Pêşmerge, Wezareta Berevanî ya Iraqê û Hêzên Hevpeymanan ji bo operasyona Mûsilê civînek pêk anîne û di civînê de gehiştine wê biryarê ku wê ji bilî artêşa Iraqê û Hêzên Pêşmerge ti hêzek din ê mîlîsî beşdarê operasyonê nabe.

Ji aliyê din ve rêxistina DAIŞ'ê ji bo jinavbirin û sabotekirina operasyona Mûsilê eve du hefteye êrîşê eniya Mexmûr-Guwêrê dike. Çekdarên rêxistinê di nava hefteyê de li gundê Giwêzat a li eniya Mexmûr-Guwêrê bi çekên giran êrîşê Hêzên Pêşmerge kirin.

Derbarê mijarê de Fermandarê Hêzên Pêşmerge li Mexmûrê Qadir Qadir ji bo BasNûçe got ku armanca van êrîşan sabotekirina amadekariyên operasyona rizgarkirina bajarê Mûsilê ye ku ji Hezîran 2014'ê ve li jêr dagirkeriya DAIŞ'ê de ye. Qadir da zanîn ku Hêzên Pêşmerge li hemû eniyan baş senger girtine û jiber vê yekê jî êrîşên DAIŞ'ê bê encam dimînin. Qadir got: "Di êrîşa dawî de jî Hêzên Pêşmerge tenê 15 xulekan bersiv dan û êrîşa terorîstan pûç kirin."

## "Ewqas xwîn ji bo serxwebûnê hat rijandin"



Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di mijara rapirsiya serxwebûnê de pêdagir e. Barzanî li Hewlêrê di dema civîna Derçûna Xula 19'emin a Perwerdeya Kadroyên PDK'ê de axivî û diyar kir ku xwîna vê carê rijyaye ji bo serxwebûnê ye û got: "An amê serbixwe bin an jî emê tev de jinav biçin."

Serokê RHK'ê diyar kir ku xwîna di şerê DAIŞ'ê de rijyaye ji bo Kurdistana Serbixwe hatiye rêjandin û got: "Min berî jî gotibû; Xwîna wê vê carê ji bo serxwebûnê be. Emê rê nedin ku xwîna me vala birije. Serxwebûn mafê me ye, me ji bo wê kar kir û emê dest jê bernedin. Ji bo me ne girîng e kî serxwebûn ragihandiye. Zarokek jî ragihîne emê piştgiriyê bidin û pîroz bikin. Divê wesa be ku heger dayika şehîdan pirsî ka ‘xwîna kurê min ji bo rijya’ em bikarin bersiv bidin." Barzanî diyar kir ku li Kurdistanê hindek kes li dijî serxwebûnê disekinin û ev yek jî wî mat dihêle û got ku Kurd xwedan doza xe ya mafdar in û di vê mijarê de ewê ne bi dilê Tirkiyê, Îranê û Emerîkayê biaxivin. Barzanî got: "Ji bo li gor dilê wan biaxivim ez naçim Îran û Enqerê. Heta min ji Amerîkayê re jî got, ku em xwediyê doza xwe ne, ji ber wê jî yan divê em hemû ji nav herin, yan vê care me xwîn bo serxwebûnê rijandiye. Yan emê serbixwe bin an jî em ê tev de jinav biçin.” Barzanî da zanîn ku heta Mûsil azad nebe wê gefa DAIŞ'ê ya li ser Herêma Kurdistanê bidome û got: "Hemû cîhan şahid e ku Pêşmergeyên qehreman li hember DAIŞ'ê serkeftinek mezin tomar kir. Derbarê çaksazî û tekoşîna li dijî gendeliyan de jî Serokê RHK'ê daxuyakirin ku ligel Desteya Destpakî û hikûmetê hevdîtin pêk anîne û diyar kir ew piştrast e ku wê qeyrana aborî derbas bikin.

## "Pesnê kurdan didin, lê çekan nadin"



Rawêjkarê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî got, "Cihê mixabiniyê ye ku hemû alî pesnê kurdan didin û dibêjin ew karîgertirîn hêz in li dijî DAIŞê, lêbelê dema mijar tê ser çekdayina kurdan, ku me çend caran daxwaza çekên giran kiriye, ti kes alîkarî nade."

Mesrûr Barzanî di hevdîtinekê de ligel Voice of America de careke din tekezî li ser çekdayina Pêşmergeyên Kurdistanê û têkşikandina DAIŞ'ê û girîngiya çareser kirina nakokiyên siyasî yên navçeyê û ragehand "Eger çareseriyek guncaw neyê dîtin wê di paşerojê de komên wek DAIŞ'ê derkevin holê."

Derbarê berpirsiyaretiya Civata Navdewletî ya li ser mijara çekdayina Hêzên Pêşmerge yên karîger û pêşkeftî Mesrûr Barzanî got: “Çekên Pêşmerge gelekî kevn in, ev jî cihê mixabinyê ye, jiber hemû kes pesnê kurdan dide ku ew hêza herî karîger e li dijî DAIŞ'ê, lêbelê heger dibe mijara pirçekirina kurdan, ku ev çend car em daxwaz dikin, lêbelê heta niha me çekên giran newergirtine. Bi nerîna min ev berpirsiyaretiya Civata Navdewletî ye, ku çi ji destê wan bê divê bikin û kurdan pirçek bikin, jiber ku em şer dikin û xwînê dirijin û qurbaniya didin û pêdawîstiya me bi tenê çekin.”

Derbarê şêwazê gihiştina çekan Barzanî got: “Hemû çekên ku têne şandin, divê destpêkê biçin Bexdayê. Lê belê heta niha Hêzên Pêşmergeyên Kurdistanê karîgerîtirin di şerê li dijî DAIŞ'ê. Çima divê ev pêdawîstiyên leşkerî pêşî biçin Bexda û raste rast neyên Kurdistanê?

### Federalî arîşeyan çareser nake

Li aliyê din Mesrûr Barzanî roja şemiyê ligel Serokê Parlemena Iraqê Selîm Cibûrî û şanda ligel wî civiya. Li gorî daxuyaniya Nivîsgeha Ragihandina Asayişa Herêma Kurdistanê di civînê de Mesrûr Barzanî ragehand ku sedemên pirsgirêkên Iraqê ne tenê pirsgirêkên ewlekarî û aborî ne, lêbelê ne serkeftina sîstema siyasî ye ku bûye sedema nebûna baweriyê di navbera pêkhateyên Iraqê de, lewma divê pêkhateyên Iraqê li ser rewşa nû gotûbêjan bikin û garentiyê li ser pêkvejiyanê peydabikin pêkvejiyanek ligel serdema nû biguncînin”

Her wiha Barzanî amaje bi pêwendiyên navbera Bexda û Herêma Kurdistanê jî kir û ragehand: “Em û Iraqê şerê dijminekî hevbeş dikin, lê belê Bexda hevkariya me nake û di gelek waran de jî astengiyan tine pêşiya me.”

Barzanî balê kişand ser rewşa federal jî û wiha berdewam kir: “Me digot qey wê sîstema federalî karibe pirsgirêkên Iraqê çareser bike, lê belê di pratîkê de diyar bû ku federalî jî nikare arîşeyên Iraqê çareser bike.”

# Cenevre dîsa bi girêka PYD'ê re rûbirû ye








Hevdîtinên Cenevre'ê careke din di rojeva dîplomasiya navnetewî de cîh girt. Yek ji mijara nîqaşan tevlîbûna PYD'ê ya civînê ye. Li aliyekî Putin eşkere kir ku divê PYD beşdarî civînê bibe, Nunerê Taybet ê NY'yê yê Sûriyê Staffan de Mistura jî girîngiya tevlîbûna kurdan a civîna Cenevreyê anî ziman. Rayedarên PYD'ê jî diyar dikin eger bê xwestin wê beşdarî tura duyem ya hevdîtinan bibin. ENKS di bin sîwana muxalefetê de tevlî civînê dibe.



**Mehmet Salih Batırhan**

Rejîma Sûriyê û opozîsyon xwe amade dikin ku biçin Swîsreyê û beşdarî civîna Cenevre III'yê bibin ku dê di 14'ê Adarê de pêk were. Mijara beşdarbûyîna PYD'ê ji bo civînên Cenevreyê hîn jî ne diyar e. Serokê Rûsyayê Putin û Nunerê Taybet ê Netewên Yekgirtî (NY) yê Sûriyê Staffan de Mistura jî eşkere kirin ku girîng e PYD beşdarî civînan bibe. Rayedarên PYD'ê jî ji BasNûçe'yê re axivîn û ragihandin ku ew amade ne ji bo Cenevreyê û li benda vexwendnamê ne.

Niqaşa 'li Sûriye ya federatîf jî ku Wezîrê Karên Derve yê DYA'yê John Kerry dabû destpêkirin didome. Piştî DYA, Moskova, Hewlêr û NY jî ket nava niqaşê û diyar kir ku divê ji bo Sûriyê federasyon bê gotûbêjkirin. Li aliyê din pispor jî radigihînin ku federasyon wê li Sûriyê bibe çareserî. Her wiha 'agirbesta' li Sûriyê jî berdewam dike û şer û pevçûnên li taxa Şêxmeqsûd ku ev demeke dirêj e dibin dorpêç û êrişên komên tundrew de ye berdewam dikin. Çavkaniyên li heremê radigihînin ku rewş ciddî ye û heta niha di encama êrişên li ser taxê de gelek sivîlan jiyana xwe ji dest dane.

**PYD wê biçe Cenevreyê?**

Ji hêla din hat zanîn ku civîna Cenevre'yê ku gelek caran hat paşxistin, wê di 14'ê Adarê de dîsa destpêbike. Mijara beşdarbûna rayedarên PYD'ê ji bo civînê ku berdewama civîna Cenevre III'yan e jî ji nuh ve tê niqaşkirin. Rayedarên PYD'ê ji bo civîna ku di 25'ê Sibatê de pêk hatibû û rejîma Şamê û opozîsyona Sûriyê beşdar bûbûn, nehatibûn vexwendin. Rûsya radihand ku divê PYD bê vexwendin û Tirkiyê jî polîtîkaya blokekirina PYD'ê didomîne. Mijara beşdarbûna PYD'ê jî bû mijara niqaşên mezin.

**Staffan de Mistura: Beşdarbûna kurdan ji bo Cenevreyê, girîng e**

Nunerê Taybet ê Netewên Yekgirtî (NY) yê Sûriyê Staffan de Mistura ragihand ku kurd jî wê beşdarî civîna ku tê pêşbînîkirin bibin û got ku 'ev girîng e.' Staffan de Mistura eşkere kir ku ew dizanin ku beşdarbûna nunerên kurdan ji bo civîna Cenevreyê gelekî girîng e. Her wiha Mistura diyar kir ku ew ji aliyê Konseya Ewlekariyê ya NY'yê ve ji bo ku beşdarbûneke berfireh pêk bîne hatiye peywîrdar kirin. Ji aliyê din, Serokê Rûsyayê Putin jî got ku divê kurd beşdarî Cenevreyê bibin. Ji bilî daxuyaniyên Putin, Cîgirê Gerînendeyê Maseya Efrîkaya Bakûr û Rojhilata Navîn ku girêdayî Wezareta Karên Derve ya Rûsyayê ye Andre Ban jî amaje bi wê yekê kir ku kurd yek ji miletên sereke yên Sûriyê ne û got ku pêwîst e kurd cihê xwe li Cenevreyê bigirin.

**Dibo: Eger bên vexwendin, em ê beşdar bibin**

Endamê Komîsyona Kar û Barên Derve yê PYD'ê Sehanok Dibo ji BasNûçe'yê re axivî û balkişand ser mijara beşdarbûn an beşdarnebûna PYD'ê ji bo Cenevreyê. Dibo da xuyakirin ku wan bi dehan caran ragihandiye ku civênên bêyî PYD'ê wê bêencam bimînin û got ku hêzên navnetewî jî vê yekê dibînin û wê di çareserkirina qeyrana Sûriyê de PYD'ê mixatab bigirin. Dibo di berdewamiya axaftina xwe de got, "Erebîstana Siûdî, Tirkiye û welatên din ên Sunnî naxwazin em di herêmê de bibin hêzêk siyasî, aborî û leşkerî. Di civînên Cenevre I - II û di hevtînên tura yekem yên Cenevre – III'yan de li pêşiya me bûn bend." Dibo eşkere kir ku heta niha vexwendname ji wan re neçûye û got ku eger bên vexwendin ew ê beşdar bibin. Dibo diyar kir ku divê kurd beşdarî Cenevreyê bibin û derbirî ku girîng e kurd jî di qeyrana Sûriyê de ajandaya xwe rabigihîn in.

**Niqaşên federasyonê jî didomin**

Ji hêla din niqaşên federasyonê jî geş bûn. Wezîrê Karên Derve yê DYA'yê beriya niha eşkere kiribû ku eger agirbesta li Sûriyê bi sernekeve wê helwesteke din a agresîf ku parçebûna Sûriyê jî digire nav xwe bigirin. John Kerry hefteya borî gotibû: "Eger Rûsya û Îran di pêkanîna hevdîtinên aştiyê yên Sûriyê de cidî nebin, em ê derbasî plana B bibin ku dibe ku meseleyê gûrtir bike." Cîgirê Wezîrê Karên Derve yê Rûsyayê Sergey Riyabkov jî çend roj piştî daxuyaniya Kerry, 29'ê Sibatê li Moskovayê civîneke çapemeniyê lidarxist û di derbarê şerê Sûriyê ku 5 sal li pey xwe hişt, got "Dibe ku Sûriye bibe dewleteke federal." Rûsyayê jî beriya niha dabû xuyakirin ku li Sûriyê ji pergaleke federal ne dûr e. Ji Şêwirmendên Beşar Esad Bûseyna Şaban diyar kiribû ku planekî bi vî awayî xizmeta gelê Sûriyê nake.

Hewlêr jî tevlî niqaşên federasyonê bûbû. Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li partiyên Rojava banga "li ser federasyonê bi rijd bin" kiribû. PYD û ENKS jî ku du partiyên li pêş yên Rojava ne, daxwaza federasyonê dikin.

**Prof. Dr. Rafik Sulaiman: Dibe ku federasyon bibe çareserî**

Ji akademîsyenên Zankoya Artûklû ya Mêrdînê Prof. Dr. Rafik Sulaiman mijara federasyonê ku ji aliyê DYA, Rûsya û kurdên Rojava ve tê niqaşkirin, ji BasNûçe'yê re nirxand. Prof. Dr. Rafik Sulaiman got ku li Sûriyê 5 sal in di navera sune û elewiyan de şerek dimeşe. Sulaiman eşkere kir ku Tirkiye, Erebîstana Siûdî û Qeter piştgiriyê didin komên sune û Îran jî piştgiriyê dide Hîzbûllaha Libnanê û Hûsiyên Yemenê û Rûsya jî piştgiriyê dide komên elewî yên li Sûriyê. Sulaiman got ku Rûsya wê li herêmên elewiyan û Fransa, DYA, Elmanya û Îngilîstan jî wê li herêmên sune û kurdan mayînde bibin. Prof. Sulaiman diyar kir ku Sûriye bi awayekî fîîlî parçe bûye û wiha axivî: "Sûriye di rewşeke wiha de ye ku fîîlen parçe bûye. Sûriyeke federal wê pevçûnên li herêmê kêm bike û bidawî bike. Em dikarên bibêjin ku planekî hêzên navnetewî ya bi vî rengî heye. Rêveberiyeke defacto ya kurdan heye. Li Sûriyê pergala federasyonê wê bibe çareserî û ev dê di demek nêzde derbikeve holê."

**Ehmed Hisso: Şêx Meqsûd dibin dorpêçê de ye**

Li Sûriyê agirbest didome û êrişên Ehrar el Şam û El Nusrayê yên li ser taxa kurnîşîn Şêxmeqsûdê jî berdewam dikin. Nûnerê hêzên Ceyş el Siwar Ehmed Hisso di derbarê êrişên li ser Şêxmeqsûd a taxa Helebê de ji BasNûçe'yê re axivî û got ku piştî ragihandina agirbesta Sûriyê, êrişên li ser kurdan zêde bûne û sivîlên ku li taxa Şêxmeqsûdê dijîn bi komkûjiyê re rû bi rû mane: "Tabûrên Nureddîn Zengî, Lîwa 13, Fewca Yekem, Firqeya 116. û Ebû Ehrar El-Şam, El Cebhe El-Şamiye, Tûgaya Siltan Mûrad, Tabûrên Fatîh Siltan Mehmed, Tabûrên Feqtesim Kema Emert, Tabûrên Emara êrişî Şêxmeqsûdê dikin. Bi destpêkirina agirbestê heta niha bi dehan sivîl hatin qetilkirin. Êrişên li ser kurdan ku ji aliyê komên ku ji aliyê Tirkiyê ve tên piştgirî kirin bi awayekî zelal derxist holê ku tu wateya agirbestê nemaye." Ehmed Hisso ragihand ku Yekîneyên YPG'ê yên li Şêxmeqsûdê bersiva êrişan didin û da xuya kirin ku tax dibin dorpêçê de ye û rewş cidî ye.

**Rejim û Rûsya li Helebê didin**

Li aliyê din operasyonên Rûsya û rejima Sûriyê yên li dijî DAIŞ'ê jî berdewam dikin. Rêxistina Çavdêriya Mafên Mirovan a Sûriyê ku li Londonê ye ragihand, di encama êrîşên balafirên rêjimê li ser taxên Helebê de 5 welatiyan jiyana xwe ji dest dane û ji aliyê xwe ve, rêjîma Sûriyê got, ku artêşê bi pîştgiriya balafirên Rûsyayê, hewldide bajarê Tedmûrê ji kontrola DAIŞ'ê rizgar bike. Rêvebirê rêxistina Çavdêriyê Ramî Ebdilrehman got ku di encama êrîşên asîmanî yên hêzên rêjîmî de, ku cara yekem e ji dema ragihandina agirbestê ve, taxa El Salihîn pêk tên, sivîlan jiyana xwe ji dest dane û amaje kir, ku ev cara duyem e taxên Helebê rastî êrîşên bi vî rengî tên. Ji aliyê xwe ve, li gorî jêderekî bi ser rêjî me, artêşa Sûriyê ligel piştgiriya balafirên Rûsyayê amadekariyên xwe dikin bajarê Tedmurê ji kontrola rêxistina terorîst a DAIŞ'ê derxin. Heman hêderî da zanîn, ku ji çarşema bûrî ve, bajarê Tedmuûrê bi dehan car rastî êrîşên balafirên Rûsî hatiye.

Mijara beşdarbûna rayedarên PYD'ê ji bo civînê ku berdewama civîna Cenevre III'yan e jî ji nuh ve tê niqaşkirin. Rayedarên PYD'ê ji bo civîna ku di 25'ê Sibatê de pêk hatibû û rejîma Şamê û opozîsyona Sûriyê beşdar bûbûn, nehatibûn vexwendin. Rûsya radihand ku divê PYD bê vexwendin û Tirkiyê jî polîtîkaya blokekirina PYD'ê didomîne. Mijara beşdarbûna PYD'ê jî bû mijara niqaşên mezin.

**Asayîşa Rojava nûnertiya ENKS'ê girt**

Fişarên Asayîşa PYD'ê ya ser ENKS'ê jî berdewam dikin. Asayişê li bajarê Tirbesipiyê Nûnertiya Encûmena Nistîmanî ya Kurd li Sûriyê (ENKS) girt. Li gor daxuyaniya ENKS'ê, roja Înê hejmarek ji endamên Asayişa Rojava êrîşî nivîsîngeha ENKS'ê li gundê Sîhayê kirin û endamekî wê bi navê Memo Şêxmûs girtin.

Her wiha ENKS'ê di daxuyaniya xwe de amaje bi wê yekê kir ku kiryarên Rêveberiya Xweser, jiyana siyasî li navçeyê pûç dike û li dijî binemayên demokrasî, azadî û fikra kurdayetiyê kardike. Li gel girtina nûnertiya ENKS'ê Asayîşa Rojava di 3'ê Adarê de endamê Komîteya Navendî yê PDK-S'ê û Endamê ENKS'ê, Ebdulrehman Apo, hatin girtin. Rayedarên Asayîşa Rojava ya Tirbesibiyê jî dxuyand ku, nivisgehên narborî destûrê ji Rêveberiya Xweser wernegirtine, ji ber vê yekê dê bên girtin ta ku destûra fermî bistînin. Ev cara duyem e, ku nivisgeha ENKS'ê li gundê Sîhayê tê girtin.

**Hejmareke xelkê Kobanê vegeriyan**

Hat ragihandin 286 penaberên Kobanê bi awayekî fermî derbasî vegeriyan bajarên xwe. Hat zanîn ku ji ber girtina deriyên sînor hejmareke zêde ya xelkê Kobanê yê hewldidin vegerin malên xwe lê nikarin vegerin. Roja Înê hejmarek ji wan di rêya deriyê Murşidpınar re, bi awayekî fermî derbasî xaka Rojava bûne û vegeriyane malên xwe. Deriyê Murşidpınar, rojên duşem û pêncşeman ji demjimêr 12 ta 5ê piştî nîvro li ber welatiyên Sûriyê yên ji pêkhateyên cuda tê vekirin, ji bo bi awakî fermî derbasî xaka Rojava bibin. Ji aliyê din ve, kesên vedigerin welat, dikarin tenê di rêyên qaçax re careke din derbasî Tirkiyê bibin û ev yek jî, bûye sedema birîndarbûn û kuştina hejmarek welatiyên Rojava ku xwestine sînor derbas bikin.

# Fezleke wek teqemeniya li bin Meclîsê ne

Eren Dinç

Gotûbêjên li ser pêşkeşkirina fezlekeyên rakirina parêzbendiyên yasayî yên parlamenterên HDP'ê berdewam dike. Hevserokê HDP'ê Salahattin Demirtaş li hember rakirina parêzbendiyên mebûsên HDP'ê îşareta terikandina meclîsê da. Niha raya giştî bi meraq li benda biryara parlamenê ye.

Piştî ku Serokomar Recep Tayyip Erdoğan derbarê mijarê de Serokatiya Parlamenê vexwende ser kar, prose bileztir bû. Li gor daneyên Serokatiya Parlamenê, ji bo HDP'ê 278, ji bo CHP'ê 138, ji bo AKP 41û ji bo MHP jî 12 fezleke hatine pêşkeşkirin. Derbarê Hevserokê HDP'ê Selahattin Demirtaş de 57 fezleke hatine amadekirin. Derbarê Serokê Giştî yê CHP'ê Kemal Kiliçdaroglu 37 û derbarê Serokê Giştî yê MHP'ê Devlet Bahçeli jî 5 fezleke hene.

AKP, ji bo dîmenên di sala 1994'an de ya dema di parlamenê de binçavkirina parlamenterên DEP'ê dubare nebin û herwiha ji bo parlamenter bêyî girtin bikevin ber lêpirsînê li formûlan digere. Tê gotin ku di civîna navxwe ya AKP'ê de ji bo vê mijarê 3 bijarde derketine pêş.

Li gor van her sê bijaredeyan; An wê parlamen an jî wê dadgeh biryarê bide, ev her du bijarde nebin, hingî wê yasa bên guhertin. Tê gotin ku piştî pêvajoya rakirina parêzbendiya yasayî bidawî bibe û bê ber qonaxa erêkirina Desteya Giştî, wê demê wê derbarê girtinan de kar bê kirin. Tê zanîn ku beriya niha ti pêkanînek wiha an jî biryarek wiha nebûye.

Bijardeyek din jî guhertina Qanûna Dadgehên Ceza ye. Ji bo vê yekê jî, beriya hevdîtinên li ser parêzbendiyên yasayî, bi guhertinek yasayî wê biryara 'parlamenter dikarin bêyî girtin bêne darizandin' bê wergirtin. Lê belê, tê gotin ku wê ev rewş li dijî prensiba wekhevî ya destûrê be û rê ji gotûbêjan re veke, herwiha rakirina hukmê wê bikeve rojevê. Kesên ku xwediyê vê nêrînê ne dibêjin ku li gor destûrê ji xwe mafê cudahiya parlamenteran tê nas kirin û ev guhertin jî dikare di nava vê cûdahiyê de bê nirxandin.

Bijardeya dawî jî li ser berdewamkirina yasayên heyî ye. Li gor vê bijardeyê jî, dadgeha ku doza parlamenteran birêve dibe, wê bikare daxwaza 'bêyî girtin darizandinê' bike. Tê gotin ku tawanên weke 'propagandaya rêxistina terorê' bikevin ber darizandina bêyî lêpirsînê û ev yek jî wê rê li ber gotûbêjên nû veke.

Derbarê mijarê de Prof. Doğu Ergil bersiva pirsên BasNûçe'yê da û got ku Tirkiye ya fermî bi tundî bersiv dide pirsa kurd û daxwazên kurdan û beşek mezin ê Tirkiye ya sivîl jî bawer dike ku ev nêzîkbûn rast e û piştgirî dide. Ergil balkêşa ser wê yekê ku desthilat jî li çareseriyên alternatîf nagere û dibêje ku divê daxwazên kurdan bêne pesend kirin lê ne Tirkiye ya fermî û ne jî ya sivîl, xwe nêzîkê pesenda van daxwazan nake.



Serokê Şaredariya Agiriyê Sırrı Sakık, Serokê Berê yê Şaredariya Sêrtê Selîm Sadak, Parlamentera HDP'ê yê Edenê Meral Danış Beşdaş û Parlamenterê HDP'ê yê Şirnexê Faysal Sarıyıldız jî ji BasNûçe'yê re gotin ku di sala 1994'ê de jî parêzbendiya yasayî ya parlamenterên DEP'ê hatin rakirin lê pirsgirêka kurd nehate çareserkirin.

## Sakık: Rêbazên kevin dîsa tên bikaranîn

Serokê Şaredariya Agiriyê Sırrı Sakık, derbarê fezlekeyên ji bo parlamenterên HDP'ê hatine amadekirin, ji BasNûçe'yê re axivî û got ew bi xemgînî vê proseyê dişopînin. Sakık got: 'Pirsgirêkên me yên mezinhene. Eve 30 sal e ji bo çareseriya bi rêbazên aştiyane hewl tê dayîn. Lê mixabin, rê û rêbazên ku di dema derbasbûyî de hatine ezmûnkirin, carek din tên bikaranîn.'

Sakık amaje bi şêwazê binçavkirina parlamenterên DEP'ê kir û got: 'Sererkanê demê û Tansu Çiller wê rojê xwestin dengê me bibrin. Bê hiqûqiyek wesa kirin ku di destê wan de ti delîl nebûn lê dema em girtî bûn, hewl dan delîlan biafrînin. Sakık diyar kir ku heger rakirina parêzbendiya yasayî ya parlamenteran bibe çare bila rakin û got: 'Em amade ne. Parêzbendiya yasayî ya 550 parlamenteran rakin. Weke partî me berî jî helwesta xwe ya di vî derbarî de eşkere kiribû. Lê li welat derbarê bêhiqûqî û gendeliyan de gelek doz hene, hûn radibin hewl didin vîna gelê kurd ya li parlemenê veder bikin.'

Sırrı Sakık da zanîn ku piştî polîsan ew binçav kirine, di demek kurt de parêzbendiya yasayî ya wan hatine rakirin û wiha got: 'Roja 4'ê Adara 1994'ê parêzbendiya yasayî li me hate wergirtin. Dîsa meha Adarê ye û dîsa mijara rakirina parêzbendiya yasayî ya parlamenterên me di rojevê de ye. Ev yek ne tesadûf e. Bi plan û bi zanebûn têne kirin. Ti feyda vê yekê ji bo ti kesî nîne. Navê vê yekê daxwaza tundiyê ye. Divê êdî aştî bê. Êdî bila dayik negrin.'

## Sadak: Li Tirkiyê ti tiştek nehatiye guhertin

Parlamenterê berê yê DTP'ê û Serokê berê yê Şaredariya Sêrtê Selim Sadak jî diyar kir ku ji doh heta îro li Tirkiyê ti tiştek nehatiye guhertin û wiha axivî: 'Rewş xirabtir bûye. Di sala 1994'ê de dema Tansu Çiller derket ser kursiyê û got 'min PKK ji parlamenê avêt' hemû kesan çepik jêre lê didin. Niha jî Serokomar Recep Tayyip Erdoğan dibêje 'ezê van ji parlamenê biavêjim'. Wê rojê ji ber kiryarên li dijî parlamenterên DEP'ê Tirkiyê gelek tişt wenda kirin. Piştî wê demê kurd zêdetir hatinegel hev. Gelek sal li ser vê rûdanê re çûn lê hê jî Tirkiye li cihê xwe de maye. Tirkiyê ti tiştek bidest nexist. Tişta ku tenê Tirkiyê ji vê zirarê rizgar bike demokrasî ye.'

## Beştaş: Serokomar ferman da

Parlamentera HDP'ê ya Edenê Meral Danış Beştaş jî balkêşa ser wê yekê ku Serokomar ferman daye dadgerî û hikûmetê û got: 'Daxuyaniyên Serokomar ne derbirîna nêrînê xwe ye. Mirov nikare vê yekê qebûl bike. Di mijara Can Dundar û Erdem Gul de jî meev yek dît. Serokomar ferman dide. Ji ber vê yekê em guh nadin gefên fezlekeyan. Ev kiryar nikarin me ji rêya me dûr bixin. Em ji nêrînên xwe paşgez nabin. Beşdaş da zanîn ku fezleke bi awayek rûtîn têne parlamenê û got: 'Ya ne rûtin ewe ku ev yek ji aliyê hindekan ve tê sepandin. Zimanê ku di ragehandinê de li dijî 5 hevalên me tê bikaranîn sivikatî ye. Bi vê hişmendiyê hê Tirkiye bikeve nav gelek karesatan. Şanda Îmraliyê jî bi agahiya dewletê çûye Îmraliyê. Ew tirsek mezin dijîn û wesa hizir dikin ku em jî ditirsin. Ti tiştek nîne ku em jê bitirsin û nekarin hesabê wê nedin.'

## Sarıyıldız: Armanc veşartina hovitiya li Cizîrê ye

Parlamenterê HDP'ê Faysal Sarıyıldız jî ku derbarê wî de gelek fezleke hatine amadekirin got: 'kurdan di salên dawî de gelek zarokên xwe qurbanî dan. Erdnîgariya wan hate xirakirin. Gelek êş kêşandin. Lê belê ligel van êş û azaran jî gel polîtîk bû û gehişte vînekê, hêzek siyasî derxiste holê. Dewlet van dibîne û jiber vê jî teslîmbûnê disepîne. Hewl dide ku gel dest ji daxwazên xwe berde. Hê jî hebûna vî gelî tê înkar kirin û bi komkujiyan re rûbirû dimîne. Ji ber ku gel vê yekê qebûl nake û liberxwe dide, desthilat zêdetir hêrs dibe û dîn dibe. Niha li ser vê yekê parêzbendiya yasayî ya parlamenteran tîne rojevê û berê xwe dide vîna gel. Li dijî gel van komkujiyan dikin, li dijî me jî çi ji destê wan tê bila bikin.'

## 'Armanca fezlekeyan berdewama guvaşan e'

Prof. Doğu Ergil mijara rojevkirina fezlekeyan weke gef dinirxîne û dibêje, 'Ji bo siyaseta kurd dest ji tekoşîna çekdarî berde, sembola wî ya nêzîk di bin zext û fişarê de digrin. Sembola li dûr Qendîl e. HDP'ê di bin zextê de digrin da ku dest ji tekoşîna çekdarî berdin.' Ergil amaje bi wê yekê kir ku piştî li parlamenê biryar bê dayîn wê pêvajoya Dadgeha destûra Bingehîn jî hebe û wiha dibêje: 'Armanc bi teqezî ne dûrxistin e, weke peyamek siyasî lê dinerin. Armanc ev e. Zana û Doğan 10 sal di girtîgehê de man. Çima hatin azadkirin? Derbarê vê yekê de tenê gotinek jî nehate gotin. Siyaseta kurd dest ji tekoşînaxwe ya çekdarî berneda. Eger bikarin bi vê rêbazê siyaseta kurd ji rêbazê çekdarî dûr bixin baş e lê divê mirov hizra vê yekê jî bika, ka gelo rêya xilaskirina tekoşîna çekdarî kuştin û girtina mirovan e?'

Ergil tiştên têne jiyankirin jî weke qeyran binav kir û wiha got: 'Li holê qeyranek heye ku her roj bi tang û topan bi sedan kes tên kuştin. Ji bo bidawîkirina qeyranê, parêzbendiyên yasayî bêne rakirin gelo wê ev yek kêr çi bê, divê mirov bersiva vê pirsê jî bide.'

## Rêbazê tundiyê tê bikaranîn

Ergil daxuyand ku bi vî awayî Tirkiye bûye du beş û û got: 'Nîvek piştgirî didin AKP'ê û nîvê din jî dijberê wê ne. Ev herdu beş dema mijar dibe kurd gelek nêzîkê hev dibin û rêbazê tundiya li dijî kurdan weke rêbazê sereke dibînin. Ev rêbaz eve 30 sale tê taqîkirin. Piştgiriya ji bo hikûmetê berdewam dike. Piraniya xelkê jî pirsa kurd weke pirsa terorîzmê dibîne. Ji ber vê yekê jî alternatîfek din dernakeve holê.'

## 'Tirkiye ya fermî jî û ya sivîl jî piştgiriya çareseriyê nakin'

Doğu Ergil got ku Tirkiye ya fermî weke pirsa terorîzmê temaşeyê pirsa kurd dike û wiha pêda çû: 'Tirkiye ya fermî bi tundî bersiva daxwazên kurdan da. Piraniya Tirkiye ya sivîl jî piştgirî dide vê yekê. Ji ber vê yekê rêyek alternatîf dernakeve pêşç Ji bo ji nûve destpêkirina hevdîtinan divê daxwazên kurdan bêne pesend kirin. Lê belê ne Tirkiye fermî û ne jî ya sivîl pesenda vê yekê nakin. Li berdêlan mêze dikin û dibêjin, çi qas berdewam dike bila bike emê vê rêbazê bikar bînin. Ji ber vê jî zirarên mezin dibînin. Li Tirkiyê hizra serdest ne çareserkirina vê pirsê ye, brovajî tepisandin û çewisandina wê ye. Vê yekê weke îsyanek tund dibîne. Emê bibînin ka ev rêbaz jî wê serkeftî be yan na.'



# 15 hezar Pêşmerge diçin Mûsilê

Siwar Bedirxan




Pêşmergeyên RHK'ê bi operasyona Şengalê derbeke giran li DAIŞ'ê xistibûn û rêya di navbera Mûsil û Reqqa ya birîbûn niha amadekariya Operasyona Mûsilê dikin. Li aliyê din rizgarkirina Mûsilê bûye pirsgirêkek navnetewî û çav li Pêşmergeyên RHK'ê ne. Fermandarên Pêşmerge yê RHK'ê daxuyandin ku ew ji bo operasyonê amade ne û Hewler jî ji bo Pêşmerge beşdarî operasyonê bibe ji koalisyona navnetewî çekên giran, ji Bexda'yê jî kontrolkirina gundewarên kurdên Mûsilê dixwaze. Li Mûsil a ku weke keleha DAIŞ'ê tê zanîn, zêdetir ji 15 hezar endamên DAIŞ'ê tê parastin, DAIŞ li heman bajarî çekên kîmyewî jî saz dike.

Bo rizgarkirina Mûsilê çavên rayagiştî ya Iraq û Herêma Kurdistanê li operasyona wî bajarê ye.DAIŞ'ê di Puşbera 2014'an de ku duyem mezintirîn bajarê Iraqê dagirkiribû û çekên bajar hemû bi destxistibûn piştre li Iraqê û Sûriyê bûbûn serwerê qadên berfireh. DAIŞ, ji bilî parêzgeha Mûsilê, navçeyên Tîkrît, Feluce û Rûmadî jî xistibû bin kontrola xwe û ji ber vê jî bibû sedema koçberiyê bi ser RHK'ê ve. Di rojên axaftina operasyona Mûsilê de, Pêşmerge pêşketîna DAIŞ'ê sekinandibû û nîqaşên beşdarbûna operasyonê destpêkiribû. Nûnerê Taybet yê Têkoşîna bi DAIŞ'ê re yê Serokê DYA yê Barack Obama, Brett McGurk hefteya borî serdana Bexdayê kir û ragihand ku ji operasyona Mûsilê re hindik maye, ji aliyekî din ve jî hat hînkirin ku 3 hezar leşkerê Iraqê li navçeya Maxmûrê ya RHK'ê ji bo operasyonê bicîhbûne.

Kîfah Mehmûdê Şêwirmendê Dîwana Serokatiya RHK'ê, daxuyand ku Wezareta Pêşmerge, Wezareta Parastina Iraqê û hêzên navdewletî ji bo operasyona Mûsilê hevdîtin pêk anîne û di derbarê hin babetan de lihevkirine. Her wiha Kîfah Mehmûd eşkere kir ku ji bilî artêşa nîzamî ya Iraqê û Peşmerge tu hêzên din beşdarî operasyonê nabîn li hevkirine ku PKK û Heşdî Şabî jî beşdarî operasyonê nabin. Fermandarên Pêşmerge yên ji bo amadehiyê leşkerî yên operasyona Mûsilê em bi wan re axivîn amaje pê kirin ku ew di demê amadehiyê dene û ji bo Pêşmerge beşdarî operasyonê bibin divê alîkari bê kirin û Pêşmerge nabe 'Cendirmêyên Sunniyan.'

## "Hewlêr dixwaze çekên giran bidin Pêşmerge"

Fermandarê Eniya Mexmûrê General Nejad Elî di derbarê rola Pêşmerge ya di operasyonê ji BasNûçe'yê re rave kir ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Hewlêr bi Hikûmeta Bexda û kaolîsyona navnetewî re di derbarê operasyonê de axivînin û ji bo Hewlêr beşdarî operasyona Mûsilê bibe hin şert dane ber pevgîhana navnetewî û hikûmeta Bexda yê. Nejad Elî daxuyand ku yek ji şertên Hewlêrê dayîna çekên giran bo Pêşmerge bû û got: "Serfkeftiyên Pêşmerge yên li dijî DAIŞ'ê li holê ne. Pêşmerge beşdar nebe di operasyona Mûsilê de serkeftin ne mimkun e. Şertên me hene. Heta çekên giran ji mere neyên şandin em beşdarî operasyonê nabin. Bi xwestina Iraqê û hevpeymaniya navnetewî em beşdarî operasyona Mûsilê nabin."

Nejad Eli diyar kir Pêşmerge amade ye ku serkeftina li Şingalê bi destxist di operasyona Mûsilê jî de bi destbixe, lê belê wê operasyon bi cîhanîna şertên Hewlêr û Pêşmerge destpêbike, ji bilî vê di nav şertên Hewlêrê de kontrolkirina gundên kurdan yên li derdora Mûsilê jî dane ber hevpeymaniya navnetewî û Bexda yê: "Divê kontrola bi sedan gundên kurdan û warên wan di destê Pêşmergeyan de bin û Pêşmerge kontrol bikin. Pêwist e em ewlehiya welatiyên xwe yên li wir pêkbînin û em nikarin qadên jîna kurdan ji artêşa Iraq û erebên sunne re bihêlin."

## General Ehmed Gerdî: 15 hezar Pêşmerge beşdar bibe

Genaral Ehmed Gerdî, di Cotmeh'a 2014'an de bi xwesteka Parlamenoya RHK'ê û bi biryara Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re fermandariya yekîneyeke ji 150 Pêşmerge pêkdihat kiribû û derbasî Kobanê bibû, niha jî li Eniya Mexmûrê ye û ew jî ji BasNûçe'yê re operasyona Mûsilê nîrxand û got: "Pêşmerge ji bo bi cîhanîna biryarên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Wezareta Pêşmerge amade ne. Ji bo operasyona Mûsilê hin biryar hatine stendin û wê Pêşmerge bi hêzek mezin bêşdar bibe." Gerdî ragihand ku Pêşmerge wê bi yekîneyeke 15 hezarî beşdarî operasyonê bibe, lê dîroka destpêka operasyonê ji ber ewlehiyê diyar nekir û daxuyand ku Pêşmerge ji bo operasyonên nav bajêr jî amade ne ku beşdariyê lê bikin.

## "DAIŞ'a li Mûsilê xetere ye ji bo RHK'ê"

Di berdewama axaftina xwe de Gerdî behsa operasyona Şengalê jî kir û got: "Pêşmerge her dem ji bo operasyonan re amade ye. Operasyona Şengalê tecrûbeya Pêşmerge ya di şer de ji her kesî re îspatkiriye. Koordînasyona me ya bi hevpeymana navnetewî re derbên baş li DAIŞ'ê xistiye. Pêşmergeyên ku wê beşdarî operasyona Mûsilê bibin jî heman serkeftinê wê bi destxin." General Gerdî rave kir ku DAIŞ, li bajarê Raqqa yê Sûriyeyê jî lawaz ketiye, rizgarkirina Mûsilê gelekî grîng e û Mûsil nêzîkî RHK'ê ye û hebûna DAIŞ'a li Mûsilê ji bo RHK'ê jî xetere ye û got: "DAIŞ'a li Mûsilê ji RHK'ê xetere ye. RHK ji bo ewlehiya xwe jî derxistina DAIŞ'ê ya ji Mûsilê çi ji destê wê bê ew ê bike. Bidestxistina Mûsilê wê RHK jî rihet bike."

## "Heşdî Şabî û PKK beşdarî operasyonê nabin"

Ji aliyekî din ve li ser pirsa me ya "Heşdî Şabî û PKK wê beşdarî operasyonê bibin an na?" Gerdî daxuyand ku gelê Mûsilê û hêzên navnetewî dixwazin artêşa Iraqê û hêzên Eniya Niştiman beşdar bibe, bi taybetî gelê Mûsilê û şêniyên eşîrê sunne yên Mûsilê ragihandine ku dixwazin Pêşmerge li Mûsilê bibînin. Gerdî amaje pê kir ku çûyîna Heşdî Şabî ya Mûsilê wê gelemşe ya nav mezheban mezintir bike û hêzên PKK'ê jî beşdarî operasyonê nabin. Wisa biryar hatiye stendin. Artêşa Iraqê û Pêşmerge bi hev re beşdarî operasyonê bibin û wê DAIŞ'ê ji Mûsilê derxînin. Gerdî wiha domand: "Ji bo DAIŞ bi giştî ji Iraqê bê derxistin dibe ku hin operasyonên din bi artêşa Iraqê bê kirin."

Farmandarê Yekîneya Pêşmerge yên Zerevanî Ezîz Weysî jî eşkere kir ku ji bo operasyona Mexmûr û Mûsilê li herêmê geşedanên çalak yên leşkerî pêktên û daxuyand ku Pêşmerge li hêviya biryarên Serokê RHK'ê û Wezareta Pêşmerge ya RHK'ê ne û li herêmê geşedanên leşkerî hene û wê operasyon di dema xwe de pêk bê.



Hakim Ehmed Enwer:

# Rê li gendeliyê tê qutkirin

Desteya Destpakiyê li gelek navçeyên Kurdistanê dest bi lêpirsinan kir û hewldide ku rêgiriyê di ber gendeliyê de bike. Her wiha tê çaverêkirin ku deste li navçe û bajarên din jî dest bi kar bike û proseya bicihkirina siyaseta pak birêve bixe.

Zeyat Cebo

Desteya Destpakiyê ya di 2011'an de bi biryara Parlamantoya Kurdistanê ava bibû bi bangawaziya Serokê RHK Mesûd Barzanî ji bo çalakkirina proseya çaksaziyan ligel Desthilata Dadwerî, Dîwana Çavdêrî ya Darayî û Desteya Destpakiya Parlamenê, hakim û dozgeran, ligel Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û şêwirmendên dîwana serokatiyê re civîn pêk anîn. Rayagiştî ya Kurdistanê û hevpeymanên Kurdistanê çaverêdikin ku Desteya Destpakiyê rêgiriyê di ber gendeliyê de bike û qeyrana darayî jî çareser bê kirin. Tê zanîn ku nûnerên G7'ê yê vê heftê serdana Hewlêrê kirine jî di derbarê qeyrana darayî de zanyarî ji Mesûd Barzanî wergirtine û soza alikariya darayî dane Hewlêrê.

Serokê Desteya Destpakiya Herêma Kurdistanê Hakim Ehmed Enwer, ji BasNûçe'yê re behsa rêgirtina li ber gendeliyê, çalakkirin û bi cihkirina biryarên di derbarê gendeliyê de kir. Li gor Enwer Desteya Destpakî û ev saziyên din bi rêya Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê li gel Serokê Herêma Kurdistanê di nava hemahengiyê de bin. Barzanî jî daxuyand ku ew dixwaze proseya çaksaziyê bi destê van sazî û desteyan bê birêvebirin.

Her wiha Hakim Ehmed Enwer dibêje, "Wê Desteya Destpakî û ev saziyên din bi rêya Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê li gel Serokê Herêmê di nava hemahengiyê de bin. Birêz Serok Barzanî jî daxuyand ku ew dixwaze proseya çaksaziyê bi destê van sazî û desteyan bê birêvebirin" û amaje bi wê yekê dike ku bi dawîbûna proseyê ew ê bigihên armancên xwe.

**Erkê Desteya Destpakî ya Herêma Kurdistanê çi ye?**

Biryara damezrandina Desteya Detpakî ya Herêma Kurdistanê li gor biryara xala 3 ya Adara sala 2011'ê ji Parlamena Kurdistanê derketiye. Lê meha Hezîrana sala 2014'ê bi awayek fermî hatiye damezrandin. Ji aliyê Parlamenê ve tê çavdêrîkirin. Yek ji erkê wê tekoşîna bi rêyên hiqûqî li dijî gendelî, wate şopandin, pêdaçûn û cîbicîhkirina yasayên gendeliyê û şopandina lêçûnên xezîneya giştî ye. Herwiha bi hemû rê û rêbazan komkirina zanyariyên derbarê dosyayên gendeliyê de û karkirin li ser van dosyayan e. Dîsa derbarê dosyayên gendeliyê de bi destê komîteyên pispor û dozgerên jêpirsînê bi awayekî yasayî û hiqûqî, lêkolîn û lêpirsîn kirine. Ev deste li ser armanca dijitiya gendeliyê hatiye damezarandin. Derbarê dosyayen de, ji komkirina agahiyan bigrin heta digehê pêvajoya dadgehê ligel wezaret û saziyên pêwendîdar di hemahengiyê de kar dike.

**Karên we û astengiyên li pêşiya we çi bûne heta niha?**

Desteya Destpakî saziyek nû ye. Ev du sal û çend meh in hatiye damezrandin. Ji ber vê yekê jî heta niha me nekariye li hemû navçe û bajarokên Herêma Kurdistanê saziyên xwe birêvebixin û karmendên pêwîst erkdar bikin û dest bi kar bikin. Yek ji sedema vê yekê qeyrana darayî ya li Herêma Kurdistanê ye. Weke tevahî saziyên hikûmî Desteya Destpakî jî ji vê qeyranê bi bandor bûye. Her çend karê me nesekinîbe jî, ji ber desteyê nekariye li gor pêwîstiyan xwe birêxistin bike, me nekariye karên xwe jî heman awayî birêve bibin. Desteya Destpakî saziyek nû ye li Kurdistanê. Dozên ku dişopîne jî ne mîna dozên din ên hiqûqî ne. Ne mîna dozên kuştin, dizî, dozên din ên asayî ne. Dozên derbarê berpirs û rêveberan de û herwiha partî rêxistin û saziyan de ne û pêdivî bi lêkolîn û derfetên mezintir û berferehtir hene.

Li Iraqê ji bo çalakkirina Desteya Destpakî ya Navendî bi sedan milyon dolar hatiye mezaxtin. Ji ber ku ligel damezrandinê, ji bo deste bikare kar bike pêwîstî bi kesên pispor heye, rahênan û perwerdeya kadro û karmendan heye. Herwiha ji bo berdewamkirina kar jî pêwîstî bi bûdceyekê diyar heye. Ji bo hevkariyê me ligel wezaretan û herwiha serokê hikûmetê jî hevdîtinên pêwîst pêk anîne. Herwiha ji bo rahênan û perwerdeyê me daxwaza alîkariyê ji konsolxaneyên welatan jî kiriye.

**Di vê pêvajoya qeyrana aborî de, ji bo çaksaziyan rola Desteya Destpakî çiye?**

Ji bilî qeyrana siyasî û aborî jî, erkê sereke yê Desteya Destpakiyê dijitiya gendeliyê ye. Lê bi taybet piştî biryarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê yên dawiya sala 2015'ê û projeya çaksaziyê ya ku Serokatiya Herêmê piştgiriya wê dike û hindek prensîb bo danîne, çalaktir bûye. Ji bo çalakkirina proseya çaksaziyan carekê weke Serokê Desteya Destpakî ya Herêma Kurdistanê cara din jî ligel Desthilata Dadwerî, Dîwana Çavdêrî ya Darayî û Desteya Destpakî ya Parlamenê û hakim û dozgeran, me du caran ligel Serokê Herêma Kurdistanê civîn pêkanî.

**Naveroka hevdîtinên we yên li gel Serokê Herêma Kurdistanê çi bû? Gelo ji bo çaksaziyan û lêkolîna li ser dozên gendeliyê wê komîteyek taybet bê avakirin?**

Tu komîteyek taybet nayê avakirin. Wê Desteya Destpakî û ev saziyên din bi rêya Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê li gel Serokê Herêma Kurdistanê di nava hemahengiyê de bin. Birêz Serok Barzanî jî daxuyand ku ew dixwaze proseya çaksaziyê bi destê van sazî û desteyan bê birêvebirin. Herwiha got 'dema pêwîst be em dikarin bicivin.' Lê belê bi taybet di vê pêvajoyê de rola girîng û beşek mezin ê karan dikeve ser milê Desteya Destpakiyê. Jiber ku dibe ji bo serxistina vê proseyê bi başdariya Desteya Destpakî û van sazî û desteyan xebatek hevbeş bê kirin. Lê kar û erkê Desteya Destpakî demdirêj e, dibe ku hindek doz bi salan jî berdewam bikin heta bigehin encamê. Ji ber vê yekê jî erkê me û karê me girantir e. Ji bo birêxistinkirina karên xwe me jî di nava xwe de rêzecivîn pêk anîn.

Birêz Barzanî xwedî du erkan e. Serokê PDK'ê ye û Serokê Herêma Kurdistanê ye. Piştgiriya xwe bo serxistina proseyê ragihand. Bixwe jî got ji bo lêkolînên pêwîst ên dosyayên gendeliyê yên nav PDK'ê wê ew jî hevkar bin. Wê partî zanyarî û alîkariyên pêwîst bidin. Weke tê zanîn derfetên wan hene ku ji gelek aliyan zanyarî û belgeyan amade bikin û pêşkeş bikin. Herwiha me ji bo karên xwe daxwaza alîkariyê ji herdu dezgeha Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê û Asayîşa Herêma Kurdistanê jî kiriye. Her çend erkê wan ê destpêkê, di vê demê de parastina xaka Kurdistanê ji gefa terorê ye jî wê dema pêş de ji bo karên çaksaziyê zêdetir jî hevkariyê ligel me de bikin.

**Gelo hûn dikarin li hemû bajaran weke pêwîst kar bikin?**

Her çend me nekariye li hemû navçe û bajarokan rêxistin û şaxên xwe ava bikin jî karê me nesekiniye. Heta niha nêzîkê 400 dosya gehiştine encam û me şandine dadgehê. Hê gelek dosyayên din di pêvajoya jêpirsînê de ne. Bêguman eger parlamen û hikûmet piştgiriya pêwîst bikin wê karê me zêdetir bimeşe. Wek mînak komîsyonên me li Hewlêr, Silêmanî û Duhokê kar dikin. Lê jiber nebûna şareza û lêkolînerên pêwîst, me nekariye li navçeyan jî karên xwe birêve bibin? Herwiha divê ji Çoman heta Kelar û ji Kifrî heta Zaxo li tevahî navçe û navendan, komîsyon û şaxên desteyê hebin.



**Gelo hûn dikarin bêyî cûdahî jêpirsînê derbarê hemû berpirsan de bikin?**

Bêguman em dikarin û ew desthilata me jî heye. Desteya Destpakî bi rêkeftina hemû aliyên nav hikûmet û parlamenê hatiye damezrandin. Serokê desteyê jî bi piştgiriya ji sedî 70'ê parlamenê tê hilbijartin. Lewma danûstandina me ya ligel hemû partî û aliyan weke hev e û bêyî cûdahî ye. Me heta niha jî li bajaran derbarê kesên berpirs de dosya amade kirine. Di nav dosyeyan de dosyayê wezîrên berê û berpirsan jî hene. Weke mînak li Silêmanî du dosya, Duhok dosyayek û li Koysancaqê jî çar dosyayên rêveber û berpirsên giştî û yên bilindtir jî heye ku me bang li wan kiriye. Herwiha lêkolîn û jêpirsînên pêwîst gehiştine encam û me dosyayên wan bi biryara Dadweriya Lêkolînê ya Desteya destpakî şandiye dadgehê. Bernameya me heye ku di demek nêzîk de li Ranya, Şarezûr, Germiyan û navçeyên din jî dest bi kar bikin.

**Heta niha tu astengî û rêgirî bo we derdikevin?**

Li Kurdistanê jî ji dest yasayan rev heye. Lê di hemû dozan de jî ev yek heye, eve tenê bi dozên me ve pêwendîdar nîne. Lê dîsa jî ji bo serxistina karê me heta niha tu rêgirî nebûye. Tu kes nebûye ku me bang kiribe û ew jî nehatibe dadgehê. Polîs û Asayîşa Herêma Kurdistanê di vî warî de dema pêwîst hevkariya me jî kirine. Dîsa birêz Barzanî bixwe jî di vî warî de diyar kir ku her gava pêwîst ku rêgiriyek çêbibe ew amade ne weke Serokê Herêmê alîkarî bidin me. Desteya Destpakî rapora xwe ya salane jî beriya demekê pêşkeşê Parlamenê kir. Di vê raporê de derbarê dozan de agahiyên berfereh hene. Lê belê jiber rênimaya yasayan, heta doz negehin encamekê û hikûm neyê dayîn, derbarê ti kes an jî saziyekê de agahî nayên eşkere kirin û ragihandin. Jixwe piştî doz gehiştin encamê wê gavê rayagiştî û hemû dezgehên ragihandinê jî dikarin bigehin zanyariyên pêwîst.

**Agahî û dosyayên derbarê dozekê de çawa werdigrin? Pêdaçûna wan çawa dikin?**

Ji hemû awayê giliyan em sûd werdigrin. Ji kesan û ji saziyan. Bi rêya gilî, poste, maîl, telefon, bi destî, bi rêya ragihandin û hemû kanalên din em agahiyan werdigrin û dixin nava dosyeya dozê de. Dozgerên me li ser van belge û giliyan jî radiwest in û heta doz digehe encamê jî pêdaçûna pêwîst tê kirin.

**Bendewariya gel û rayagiştî ya Kurdistanê ji we çi ye?**

Di demên wiha yên qeyranê de zêdetir bala xelkê û raya giştî dikeve ser Desteya Destpakî. Lê belê weke me got; encamdana her dosya û dozekê demek dirêj dixwaze. Hindek ji wan bi salan berdewam jî dikin. Gelek caran jî kar tenê bi Desteya Destpakiyê jî naçe serî. Pêdivî bi belge û destûra sazî û rêxistinên hikûmî heye. Heta karên burokratîk ên derbarê wan de jî digehe encamekê demek diçe. Le ya girîng ew e ku niha xelk dizane ku dezgehek heye û pêdaçûna van dozen dike.

> Tê zanîn ku hevpeymanên RHK'ê jî biryarên Desteya Destpakiyê ji nêz ve dişopînin û ew jî amadekariyên xwe dikin da ku alîkariya darayî bişînin ji RHK'ê re da ku qeyrana darayî bi dawî bibe.

**Hêz û dewletên dost ên ku dixwazin alîkariyê bidin Herêma Kurdistanê, çawa nêzîkî proseya çaksaziyê û tekoşîna li dijî gendeliyê dibin?**

Gelek caran nûner û konsolên welatan tên hevdîtinê ligel me jî dikin û di vî warî de pirsan ji me dikin û proseyê ji nêzîk ve dişopînin û erênî jî dinirxînin. Bêguman ew jî çavdêriya vê yekê dikin ka gelo RHK'ê di mijara çaksaziyan de çiqas bi biryar e. Weke mînak ez bêjim; piştî civîna me ya ligel Serokê Herêmê yekser Konsolê Amerîkayê pêwendî ligel min de kir û pirsa biryarên derbarê proseya çaksaziyan û tekoşîna li dijî gendeliyê kir. Diyar e ku dixwazin bizanin ka em di mijara çaksaziyan de çend ciddî ne. Weke tê zanîn Amerîka û hêzên hevpeymanan di heyama pêş de dixwazin alîkarî bidin Hêzên Pêşmerge. Ew jî dixwazin bizanin ka ev hevkariyên wan digehe cîh û weke pêwîst tê bikaranîn an ne. Herwiha eve bo îmaja Kurdistanê jî baş e. Ji bo serkeftina proseya çaksaziyan jî baş e.

Ji aliyê din ve ji bo pêşxistina karê Desteya Çaksazî em saziyên pêwendîdar ên navnetewî jî lêkolîn dikin. Ji ezmûnên wan sûd werdigrin. Weke mînak me ji bo vê yekê serdana Swîsreyê û Îtalyayê kir. Daxwaza alîkariyê ji Amarîkayê, ji Netewên Yekbûyî û Yekîtiya Ewropayê jî kir. Lê bi rastî jiber şerê DAIŞ'ê ev yek zêde gengaz nebû û pêk nehat. Me xwest nûner û karmendên xwe jî ji bo perwerdeyê bişînin derve lê derfetê darayî nebûye. Me li gor derfetên xwe çend dewreyên perwerde û rahênanê daye dadger û karmendên xwe.

**Qeyrana siyasî ya li Herêma Kurdistanê çend rêgire li ber karê Desteya Destpakî?**

Desteya Destpakî dezgehekê ser bi parlamenê ve ye û parlamen çavdêriya wê dike. Jiber vê yekê jî bo me baştir bû ku parlamen û hikûmet li ser kar be û çalaktir bibe da ku karên me jî bêyî mijûl bibin birêve biçin. Niha ji bo çareserkirina qeyrana siyasî jî hewlek heye. Bêguman ji bo serkeftina proseya çaksaziyan jî divê hikûmet ser kar be. Bi vî awayî pêşniyaz biryarên me ku em pêşkeşê parlamenê dikin jî tên gotûbêjkirin. Herwiha gelek projeyasayên desteyê hene ku li parlamenê li benda erêkirinê ne. Weke hemû sazî û dezgehan pêwîstiya Desteya Destpakî jî bi çavdêriyê heye. Sîstem bi çavdêrî û mekanîzmaya kontrolkirina hev birêve diçe.

**Gelo wê Desteya Destpakî bikare proseya çaksaziyê serbixe?**

Bêguman proseyek ne hêsan e. Kar û xebat ji bo vê yekê ne. Lê divê alîkariya hemû aliyan jî hebe. Nexwe bi destê dezgehek tenê jî zehmet e. Jiber ku proseyek gelemperî ye.



# Li Rojhilat dema geşbûna kurdî

Welat Baz




Serokkomarê Îranê Hesen Rûhanî sala borî li Parêzgahe Kurdistanê civînek pêk anîbû û ragihandibû ku ew ê ji bo perwerdehiyê beşa zimanê kurdî vekin. Piştî demekê di bin banê Wezareta Zanistiyê de beşa Ziman û Wêje ya Kurdî hat vekirin û bi vê pêngavê rewşa zimanê kurdî li Rojhilat ber bi pêşketinê ve bi rê ket. Dewlemediya kurdî bi awayekî fermî li her qadên civaka kurd de bû xwedî cîh.

**Tekoşîn Mêrdînî**

Li Rojhilatê Kurdistanê zimanê kurdî her diçe pêşdikeve, xebatên taybet û girîng rû didin. Serokê Beşa Ziman û Wêje ya Kurdî ya Zanîngeha Kurdistan Bextiyar Secadî li ser rewşa ku li Rojhilatê Kurdistanê Ziman û Wêjeya Kurdî de ji BasNûçe'yê re axivî û got: "Îsal cara yekem e ku Beşa Ziman û Wêjeya Kurdî li Zanîngeha Kurdîstanê ya li bajarê Sinê hate vekirin, 40 xwendekar jî hat wergirtin û niha jî dixwînin. Armanca me ew e ku Beşa Ziman û Wêjeya Kurdî di qadên zanîngehê yên wek lîsansa bilind û doktora jî bê vekirin. Dîsa îsal cara yekêm e ku li Tehran a paytextê Îranê sazî û dezgehên dewletê nerînên xwe di derbarê ziman û wêjeya kurdî de anîn ziman. Di nav dezgeh û saziyên dewletê de Wezareta Zanistî, Enstîtuya Îrannasî, Akademiya Ziman û Wêjeya Farsî, Dezgeha Ferhengnasî û Wezareta Perwerdehiyê jî hene." Bextiyar Secadî diyarkir ku ev navend û wezaretên cuda cuda yên Îranê ji bo pêşketina ziman û wêjeya kurdî nerînên xwe yên erênî pêşkêşî wan kirine.

**Xebatên siberojê**

Secadî eşkere kir ku piştî du salan ew ê bikaribin zimanê kurdî li bajarê Sinê ya peytexta Parêzgeha Kurdistanê wek zimanê perwerdehiyê li dibistanan jî bidin destpêkirin: "Zimanek dema ku di dibistanan de neyê xwendin û nebe zimanê perwerdehiyê di warê zanistî û civakî de jî rastî pirsgirêkan tê û di nav gel de jî nakokî li ser ziman derdikevin. Ji ber vê yekê em girîngiyê didin zimanê kurdî ku li dibistanan jî bibe zimanê perwerdeyê. Niha tenê li zanîngehê bi zimanê kurdî beşek hatiye avakirin, lê em dixwazin di perwerdeyê de jî bi awayekî fermî were bikaranîn."

Li Rojhilat di her warî de ji bo pêşkeftin û bikaranîna zimanê kurdî xebat pêk tên. Secadî ragihand ku sazkirinên çapemenî, rojname, çapxane, weşanxane, govar û pîrtûk hin ji van xebatan in û piraniya van xebatan li Sinê û bajarên din pêk tê. Secadî diyar kir ku ew li Rojhilat zimanê kurdî bi tîpên erebî dixwînin û dinivîsin, tenê ji bo çend dersên di beşa ziman û wêje ya kurdî de tîpên latînî bikartinîn.

**Xebatên ziman yên giştî**

Li Rojhilat her bajar xwedî encumeniyekê ye û ew encûmenî di babetên cuda de ji bo kurdî pêş bikeve hin xebatan pêk tînin. Serokê Beşa Ziman û Wêje ya Kurdî Bextiyar Secadî di derbarê babetê de eşkere kir ku li Sinê, Saqiz, Merîvan, Bokan, Mehabad, Kirmanşah, Îlam û li hemû bajar û bajarokên Rojhilatê Kurdistanê encumeniyên edebî hene û li her bajarî di babetên cuda de jî encumen hene û got: "Li bajarê Sinê 10 encumenên cuda cuda hene. Ev encumen bi Wezareta Ferheng û Îrşad ya Îranê ve girêdayî ne. Di sala dawî de encumenên li hemû bajar û bajarokên Rojhilatê Kurdistanê gelekî çalak bûne û rûniştinên xwe yên heftane sazdikin." Ji bilî encumeniyan, enstutût jî hene: "Li bajarên Saqiz, Sinê û Mehabadê ev enstutût ji bo hînkirina zimanê kurdî dixebitin. Ji bilî encumen û enstituyan li Zanîngeha Kurdistanê bi awayekî fermî Navenda Lekolînên Kurdnasiyê jî heye û wek şûrayekê tê bi navkirin. Vê navendê gelek konferansên navnetewî lidarxistiye, 45 pîrtûk amade kiriye û îsal jî dest bi weşana rojnameyeke kirine. Ev rojname di derbarê ziman û wêjeya kurdî de û di warê lekolîna ziman, zanistî û wêjeya kurdî de xebatên xwe dike. Her wiha ev rojname ji aliyê Wezareta Zanistî jî hatiye pesendkirin."

**Cureyên xebatan li gor bajaran**

Her bajar bi derbarê mijarekê de tê naskirin û wisa tê bi navkirin li Rojhilatê Kurdistanê. Serokê Beşa Ziman û Wêje ya Kurdî Bextiyar Secadî daxuyand ku bajarên helbestê Bokan, Merîvan û Mehabad e, lê li her bajarî jî rojname tê weşandin û belavkirin. Secadî wiha pê de çû: "Her wekî din bajarokekî bi navê Mang heye lî Rojhilatê Kurdistanê wek bajarê gotaran tê nasîn. Ji bili vê li bajarê Saqizê navenda gotoran heye û ew navend nêzî 200 pîrtûkan û nivîs û helbestên kurdan çapkiriye û weşandiye. Li Sinê tenê gelek govar, rojname û weşanxane kar û barên girîng dikin û her diçê pêşve dikeve."

Rewşa nivîs, helbest, nivîskar û helbestvanan jî êdî ber bi başbûnê ve diçe û li Îranê bo karên wisa navendên dewleta Îranê hebûn û xebat kontroldikirin. Secadî di derheqê mijarê de rave kir ku di salên dawî de ji aliyê kurdan ve hin navendên weşan û belavkirinê hatine damezrandin û hemû karên wek çapkirina govar, rojname û pîrtûkan û belavkirina wan jî ew birêvedibin û got: "Ger em xebatên salên dawî û yên beriya 20 an 30 salî bidine berhev derdikeve holê ku rewş ji berê gelekî baştir e û her biçe ew ê baştir jî bibe û 20 sal berê ev xebatên wisa me dîtibû di dîrokê de. Dibe ku rojnamên me kêm bin lê gelekî karên baş dikin. Ji ber vê yekê min got sala 2015'an sala zimanê kurdî ye. Wek tê xuyakirin em jî dikarin bêjin ji 2010'an û vir de rewşa ziman û pêşketina wêjeya kurdî gelekî baş diçe."

**Helwesta dewleta Îranê**

Dewleta Îranê di qadên ziman, wêje zanistî û çand û hunerê de dewleteke gelekî pêşketî û her dem li van babetan jî xwedî derketiye. Rewşa kurd û kurdî jî li Rojhilat her diçe baştir dibe, di derbarê babetê Secadî helwesta dewleta Îranê wiha axivî: "Dewleta Îranê piştgiriyê dide xebatên ziman, ferheng, mûzîk û wêjeya kurdî. Ger xebatên van mijara ne siyasî be tu pirsgirêk nayê jiyîn. Hikûmeta Îranê piştivaniya me dike, piştivaniya vekirina beşa zimanê kurdî dike, piştivaniya parastina çanda me dike û her wiha alikariya televîzyonên me jî dike, lê dema ku xebat bi rengekî siyasî be helwesta dewletê tê guhertin."

Secadî da zanîn ku li Îranê Wezareta Zanistî û Wezareta Perwerdeyê hene. Zanîngeh bi Wezareta Zanistî'yê ve girêdayiye û dibistan jî bi Wezareta Perwerdehiyê ve girêdayiye. Secadî wiha domand: "Em dixwazin ji bilî Zanîngeha Kurdistanê, li zanîngehên din jî beşa ziman û wêjeya kurdî vebe. Her wiha wek zimanê perwerdehiyê jî ji aliyê Wezareta Perwerdehiyê ya dewleta Îranê bê pesendkirin û li dibistanan bê xwendkirin."



Sêgoşeya YE - Tirkiyê û Sûriyê

# Penaber bêçare man

Murat Özdemir

Pevçûn û şerê li Sûriyê bi ragihandina agirbestê ji dijwariya xwe hinek winda kiribe jî, reva xelkê herêmê ya ji şer ku weke 'qeyrana penaberan' tê binavkirin didome. Ji destpêka şerê Sûriyê heta niha bi milyonan însan ji cih warên xwe bûn û mijara kesên ku ji şer redivin bû mijarek navnetewî, ji ber ku pêla penaberan li welatên cîranên Sûriyê ranewestiya û di serî de dewletên Ewropayê, dinya hemû neçar ma ku bi rastiya penaberan re rû bi rû bimîne. Her çiqas qeyrana penaberan bûbe malê hemû cîhanê jî dewletên ku di serî de ketin bin bandora pêla penaberan dewletên cîranên Sûriyê bûn. Yek ji van dewletan jî Tirkiye ye û ji destpêka qeyrana Sûriyê û vir ve nêzî 2 milyon penaberan xwe spartin Tirkiyê. Tirkiye jî ji bo ku barê penaberan ê li ser milê xwe sivik bike di nava hewldan û xebatan de ye. Di vê çarçoveyê de herî dawî agahiyên rêkeftineke di navbera welatên Rojava û Tirkiyê de belav bûn.



Lêgerîna çareserkirina qeyrana penaberan didome û Tirkiye û Yekitiya Ewropa li ser planekê li hev kirin. Li gor rêkeftina navbera herdu aliyan Ewropa wê 3 milyar Euro ji Tirkiyê re bişîne û Tirkiye jî wê pêla penaberan a ber bi Ewropayê ve rawestîne û penaberên ku Ewropa dersînor bike werbigire. Her çend rêkeftin pêk hatibe jî pispor û akademîsyen balê dikşînin ser wê yekê ku çarenûsa penabaran diyar nîne.

Hefteya borî Yekitiya Ewropa (YE) û Tirkiye li ser qeyrana penaberan rêkeftinek pêk anîn. Li gor vê rêkeftinê YE wê heta dawiya 2018'an 3 milyar Euroyan bide Tirkiyê. Tê gotin ku Tirkiye daxwaza 6 milyar dolaran dike - Her wiha wê ji bo welatiyên Tirkiyê vîzeya Ewropayê bê rakirin. Xalek din ya ku di rêkeftinê de cih digire jî ew e ku li hember her penaberê ku ji bo Tirkiyê bê şandin, welatên Ewropayê wê bi rêyên legal penaberekê werbigirin. Ango çiqas penaber bên vegerandin, ewqas penaber wê bên stendin.

Herdu alî wê 17 – 18 Adarê dîsa bên bal hev û xalên dawîn yên rêkeftinê wê bên gotûbêjkirin. Rojnameya we BasNûçe'yê jî li ser vê rêkeftinê bi Yrd. Doç. Dr. Başak Yavcan û Serokê IMPR-Humanitarian Veysel Ayhan re axivî û li bersiva pirsên BasNûçe'yê da.

**Başak Yavçan: Wê di Adarê de enceameke bidest bikeve**

Akademîsyen Başak Yavçan li ser rêkeftina navbera YE û Tirkiyê de got ku ji bo qeyrana penaberan pêşketinek çêbûye û eşkere kir ku wê di meha Adarê de encameke teqez bidest bikeve. Yavçan anî ziman ku ev rêkeftin, pêngaveke erênî ye û wiha pê de çû: "Ev 5 sal in em bi vê mijarê re rû bi rû ne. Ya divê em pêk anîn entegrasyona penaberan e. Divê polîtîkayên bi vî awayî bên meşandin. Yekitiya Ewropa ne ji bo entegrasyonê di aliyê ewlekariyê re li vê mijarê dinêre. Nêzîkatiya YE di vî warî de ye. YE zêdetir li ser ewlekariya sînorên xwe disekine." Her wiha Yavçan diyar kir ku ev pere tê, wê zêdetir li ewlekariya sînor bên xerckirin û ragihand ku divê ji aliyekê xebatên ewlekariyê û ji aliyê din ve jî polîtîkayên entegrasyonê bên meşandin û wiha axivî: "Ev ji bo Ewropayê jî gavek erênî ye. Mirovên ku ji Sûriyê û welatên din redivin ne tenê ji ber şer ji ber kêmasiya derfetên perwerdehiyê û aliyên jiyanê yên din jî redivin û berê xwe didin Ewropayê."

**"Li Tirkiyê tenê ji sedî 10 penaber di kampan de dimînin"**

Tirkiyê ji destpêka şerê Sûriyê heta niha daxwaza xwe ya herêmek tambon bi lêv dike û dixwaze penaberên Sûriyê di nava axa Rojava de li ser xeta Ezaz Cerablûsê ku niha di destê komên El Nusra û Ehrar el Şamê de ye û YPG'ê berê xwe daye wir, ava bike. Heta Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan ragihand ku wan kordînatên herêma ku ew dixwazin penaberên ji Sûriyê re lê bicih bikin jî diyar kirine. Her çiqas Tirkiye her tim vê daxwaza xwe bi lêv bike jî heta niha Ewropa, Rûsya û DYA'yê piştgirî nedayîne vî planê Tirkiyê. Me ev mijar jî ji Başak Yavçan pirsî û Akademîsyen Yavçan got ku li Sûriyê gelek aktor hene û ev ne tenê mijareke wisa ye ku bi biryara Tirkiyê pêk bê. Divê ew aktorên ku li Sûriyê di nava şer de xwedî gotinên ji vî planî re bêjin erê. Yavçan axaftina xwe wiha domand: "Ne diyar e ka Tirkiye dê li deverên ku dixwaze bajêr ava bike yan na, lê belê zêdetir ji Tirkiyê tê xwestin ku li qeraxên Rojavayê welat kampan ava bike. Tiştek din jî heye ku divê bê gotin, li Tirkiyê tenê ji sadî 10 penaber di kampan de dimînin, yên din hemû li bajêrên Tirkiyê belav bûne. Ji meha Hezîranê pê ve wê penaber ji Tirkiyê re bên şandin. Li hember yên hatine şandin, ewqas penaber jî wê bi rêyên legal bên wergirtin. Ji ber ku Ewropa deriyê xwe bi temamî nagire ev tiştekî erêniye. YE dixwaze penaber bi rêyên hiqûqî werin. Lê li vir jî pirsgirêkek heye, rêyên hiqûqî girtî ne. Ji xwe ji ber vê yekê penaber serî li rêyên ne hiqûqî didin."

**"Gelek krîter hene ku divê Tirkiye pêk bîne"**

Akademîsyen Başak Yavçan di berdewamiya axaftina xwe de balkişand ser fona ku tê gotin wê ji Tirkiyê re bê şandin û got ku Tirkiye heta dawiya sala 2018'an daxwaza 6 milyar Euroyan dike û anî ziman ku pêkanîna vê rêkeftinê bi pêngavên herdu aliyan ve girêdayiye. Yavçan got ku gelek krîter hene ku divê Tirkiye pêk bîne û wiha axivî: "Gelek krîter hene. Nizanim ka Tirkiye dê di ewqas demek kurt de van krîteran pêk bîne. Tê daxwazkirin ku polîtîkayeke Tirkiyê ya penaberan hebe. Tirkiye penaberên ku ji welatên Rojhilata Navîn tên weke di statûya penaberan de qebûl nake û Ewropa dixwaze ev bê gûhertin. Ji bo vê yekê jî divê binesaziyeke hiqûqî bê çêkirin. Ji ber wê yekê dibe ku ev hinek wext bigire. Hêdî hêdî di wî alî de hinek gav tên avêtin, lê belê em nizanên ka wê bigihije meha Hezîranê."

Yavçan her wiha got ku pêkanîna vê rêkeftinê bi girtina sozên herdu aliyan ve girêdayiye û eger ew tiştên hatine gotin û sozên hatine dayîn cihê xwe bigirin, wê encam ji vê rêkeftina di navbera YE û Tirkiyê derbikeve.

**Veysel Ayhan: YE ji ber parastina pergala xwe gav diavêje**

Serokê IMPR-Humanitarianê ku êdî weke rêxistineke sivîl karên xwe dimeşîne û di mijarên penaber û mafên mirovan de xebatan dike, Veysel Ayhan jî li ser rêkeftina di navbera YE û Tirkiyê û planên herêma ewle û mafên penaberan de ji BasNûçe'yê re axivî û diyar kir ku ev 5 sal in ev pêvajo didome û Tirkiyê ji ber şerên li Rojhilata Navîn diqewimin deriyê xwe ji hejmareke mezinn ya penaberan re vekir û ev jî barekî giran û ciddî ye. Ayhan got ku Tirkiyê ji tenduristiyê bigire heta perwerdehiyê û warên din, bi tenê pêdawîstiyên penaberan pêk anîn û wiha pê de çû: "Civaka navnetewî di warê parvekirina berpirsyariyê de gaveke girîng neavêt. Tenê sadê 3 – 4 alîkarî kir. Pêdiviyên penaberan bi çavkaniyên netewî hatin pêkanîn. Niha ya ku divê bê kirin û rast ew e ku YE berpirsyariyê werbigire û barê Tirkiyê sivik bike." Ayhan got ku civaka navnetewî ne ji ber sedemên mirovî ji ber hevsengiya polîtîkayên xwe û parastina pergala xwe gav diavêjin.

Li ser pêkanîna rêkeftinê jî Ayhan diyar kir ku eger şert û mercên hatine danîn û krîterên hatine diyarkirin bicih bên wê rêkeftin jî encam bide û got, "Helbet eger dewlet di navbera xwe de rêkeftin îmze bikin, bicihkirin û pêkanîna wan jî heye."

**"Divê YE jî gavan biavêje"**

Serokê IMPR-Humanitarianê Ayhan di berdewamiya axaftina xwe de ragihand ku Tirkiyê di warên perwerdehî, tendirustî, derfetên kar û dayîna mafan de ji bo penaberan gelek gav avêtin û penaberên li Tirkiyê bi hemwelatiyên Tirkiyê re xwedî heman mafan in û wiha dirêjî da axaftina xwe: "Tirkiyê ya dikeve ser milê xwê pêk anî. Mafên penaberên li Tirkiyê ji yên civaka navnetewî dayîne penaberan gelek zêdetiri in. Pirsgirêka sereke û ya ku divê gav biavêje Ewropa ye. Divê di vê mijarê de Ewropa gav biavêje.

Veysel Ayhan di derbarê projeya Tirkiyê ya 'herêma ewle' û bicihkirina penaberan di nava axa Rojavayê Kurdistanê de jî ragihand ku ew mijareke ku welatekê sêyemîn dikeve nav e û ev jî di nava vebijêrkan de ye û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Eger herêmeke ewle bê avakirin, dibe ku ev vebijêrk jî bê fikirîn."

İlhami Sertkaya:

# Edebîyato bêşar, şaro bê edebîyat nêbeno

Ez xora welat de zî ebe edebîyatî eleqedar bîyêne, la ê wextan welatê ma de her hetê ra çalakîyê sîyasetî her çî kerdîbî binê bandura xo. Hêrişê faşîstan û dewlete ra çi heyf ke firsend çin bî ke însan cayê xo de, keyeyê xo de rehet ronişo, tenya biwano. Ney, ver bi na xederîye çi heyf ke kitabî ney, çekî fayde kerdêne. Yanî, çekê to ke çin bo, ti ke xo û taxa xo meşeveknê, faşîstî kewtêne keyeyan, to zî, kitabê to zî veşnêne. Coka biwaze mewaze o waxt her çî ra ver sîyaset bî. Zaf kitabî mi heta nême wendîbî, nêqedênaybî. Serebût de firsendê kitabwendişî zaf nêbeno. Serran ra tepîya ke ez ameya Ewropa, dima ê broşurî ra ez tayê Fransa de menda. Mi hem karê xo yê sîyasetî kerdêne, hem zî seba kitabwendiş waxt dîyêne. Îta de, çiqas karê to yê sîyasetî bibo zî, axir seke ti pukeleke ra vecîya, beşekena ge-ge bifikirîyê.

Rojê mi Parîs de, Enstîtuya Kurdan de, derheqê sareberzkerdişê Dêrsimî de yew semîner da. Semîner ra dime yew cênîka dêrsimija extîyare ra fikrê aye pers kerd. Na cênîka extîyara heştayserrîye wexto sareberzkerdişê Dêrsimî de zaf çî bi çimanê xo dîyo. Mi ra bi kirmanckî “Lajê mi, to zaf qisey kerd la çi heyf ke mi teba fam nêkerd” vat. Na cumla aye mezgê mi de zimîye. Mi xo ra pers kerdêne, “Ma çik îme? Kam îme? Dawaya ma, derdê ma çik o? Ma vanîme ‘Kurdîstan, kamîye, ziwan, serbestîye’ la qey ziwanê xo nêzanenîme? Asteng çik o? Yew kes ke ziwanê xo biwazo bimuso, kam ci ra çi vano? Kam asteng keno? Qet kes ney û asteng zî çin o. Eke henî yo, qey ez ziwanê xo mezanî, memusî, qisey mekerî, menusî?” A roje ra tepîya mi nakokîya xo, şaşîya xo fam kerde û dest kerd ziwanmusayîşî. Verî ez kirdaskî (kurmanckî) musa. O waxt mi kitabê xo yê şîîran ê kirdaskî yo newe bi nameyê Birîna Bêar nustîbî. Nê serran de çend kitabê min ê şîîrî û yew romanê mi bi tirkî çap bîbî. Dime ra mi fam kerd ke kirmanckî kirdaskî ra xeylê tepîya û perîşan o. Mi o waxt dest kerd kirmanckîmusayîş. No seba mi şorêş bî. Mi bi nê fikirî şoreşê xo kerd. Çimke mi dî ke kirmanckîmusayîş tenya kirmanckîmusayîş nîyo, resayîşê rastîya xo, kamîya xo yo. Ez a roje ra nat kirmanckî nusena.

**Kilama Şîlane**

Kilama Şîlane de vîyarteyê mi esto. Mi waşt ke ez ê vîyarteyî bi roman binusî. Wendoxî zanenê ke uca de fîrar ez a. Ê bînî zî, yanî qehremana romanî, Şîlane zî, xora seke roman de nusîyo, peynîye henî bîyo. Sosine û Gulîzare de, heya, mi bi zanayîş qehremanî cênîyan ra peyda kerdî. Sebebê naye zî, ancîna vîyarteyê mi de, serranê 1981-1982 de mi qehremanîya çend cênîyan dîye û şahîd bîya ke qet xo vîr ra nêkena. Ê qehremanê ke vengê xo, nameyê xo çin ê... Cênîyan qehremanîya xo dime ra zî nîşan kerde, la ancîna zî edebîyat de, romanê ma de qehremanî zafêrî camêrd ê. No tayê zî




protestoyê min ê nimiteyî yo. Heya, ebe nê fikirî mesaj zî dana ez. Mesajê mi no yo ke “cayêde ke cênî mebê, uca de ne rindîye ne zî rindekîye bena”, ne demokrasî ne zî raverşîyayîş beno. Wa bizanê ke cênî zî qasê camêrdan, heta înan ra zaf zêde cefa zî ancenê, qehreman zî benê. Eke nîya wo, wa her kes heqê cênîyan zî teslîm bikero. Waxto ke ez koyan de bîya, pîrika min a rebene, seba ke mi bivîno, camêrdan ra qat bi qat duşte eskeran vinetêne. Ma a cênîya dêrsimije? A mabênê eskeran ra vîyartêne, bêters ma rê werd ardêne. Tesîrê jêhatîya cênîyan mi ser o zaf o. Gulîzare zî rast a, Sosine zî. Gulîzar û Sosinî zaf ê, qey menusîme?

Romannuştoxî çi wanenê, çi ciwîyenê, çi vînenê, çi zanenê, şert û mercê hewayê nînan estê. Însan ke çi zaneno, çi vîneno, qalê înan keno. Îta de ebe nînan xeyalê xo şuxulneno. Sîndorê xeyalî zî esto. Çîyê ke to ser o tesîr kerdo û keno, çîyo ke to dejneno û dejno, ti binê tesîrê înan der a. Tarîxê welatan de, miletan de çi heyf ke şer zaf bîyo. Bîyayîşê yew çî ke pêro welatî kerdo binê tesîrê xo, helbet edebîyatî zî keno binê tesîrê xo. No tesîr xo roman de zî nîşan dano, zimneno. No seba romanî babetan peyda keno. Yew romannuştox ke vîst serrî hepis de bimano, dime ra ke roman binuso, îlam ke qalê nê hepisî keno. Çimke kewto binê tesîrê hepisî û uca de zaf çî ciwîyayo. Mekewê hepis zî, seba ke hîsdar ê, welato ke ciwîyenê, eke hepis înan ser o zaf tesîr kerdo, îlam ke roman de nînan şuxulnenê. Romannuştoxî, çiqas ke xeyalê xo hîra bibê zî, seba ke hîsê înan xorî yê, çîyê ke meciwîyê zî, ciwîyayîşê der û dormeyê xo hîs kenê, îta ra babetan peyda kenê.

**Bingeyê edebîyatê modernî**

Tayê çîyî estê ke ciwat û ciwîyayîşê pêro welatî û şarî ser o zaf tesîr kenê. Her kes îta de para xo gêno. Helbet romannuştoxî zî para xo gênê. Homereso ke Î.V. heşt seyine ciwîyayo, helbet qalê Yunanîstanê ewroyî û bîyer û rojeva ewroyî nêşikîyêne bikero. Çimke ne dîyo ne zî zanitêne. Qet çîyêde ewroyî çin bî ke ey bikero binê tesîrê xo. Romannuştoxê ke to qala ci kerde, zî henî yê.

Bingeyê edebîyatê modernî, edebîyatê klasîkî ser o peyda bîyê. Edebîyatê şarê ereban bingeyê vateyê bedewîyanê ke çolan de, deweyan ser o peyda bîyê, virazîyo. Yanî mîraz, edebîyato kalsîk o. Kurdan de zî no binge edebîyato fekkî yê klasîkî, fekê dengbêjan ra vecîya. La nê mîrazî seba edebîyatê şar bîyene binge yo. Şar bîyene, milet bîyene nîya. Milet bîyene, pêro şarî, yew durişme, yew mentalîte, vila û lete bîyena ziwanî kom kerdene, bi yew adrese virastene, peyda kerdene ya. Îta de di çîyî zaf muhim ê: yew bazar û seba nê bazarî yew ziwan. Tarîxê to esto, kulturê to esto, kamîya to esta, durişmeyê to, mentalîteyê to, adetê to, kelecanîya to esta, la vila yo, lete yo. Edebîyat na vilayîye, o ziwano ke mintiqan û dewan de, bi fekî cîya yê, nînan arê dano, kom keno, pêrune ra yew adrese peyda keno ke, na adrese netewe yo ke her kes na adrese de xo vîneno, wayîr vecîno. Endî îta de milet esto. Milet ke bibo, netewe zî bena. Merhaleyê milet bîyene de karo tewr girs edebîyatî ser o yo. Bitaybetî zî roman û şîîre ser o... Çimke roman mîrazê şarî, mîrazê ciwatî, sey kurecî şuxulneno, xemilneno, bi ziwanêde estetîk peyda keno ke no ziwano estetîk ruh dano şarî, no ruhê netewe yo, ruhê milî yo. Bê ziwanî qet çîyê yew şarî nêkeno milet. Edebîyat, bitaybetî roman zî, nê ziwanî raver beno, zelal keno, na zelalîye awan keno ke endî tarîx û kulturê nê şarî, kamîya nê şarî benê netewe, benê milî.




## İlhami Sertkaya kam o?

Ez Çewlîg ra, mintiqaya ke nameyê new dewan o, ci ra vanê “Karêr”, nika girêdayîya Azaper a, aznê dewan de, dewa Pîrcanan de ameya dinya. Yew roja hamnanî, wareyê Pîrcanan de ameya dinya. Nameyê mi zî, şewa bîyayîşê mi de yew meymanê ma estbîyo, nameyê ey no mi ra. Serra bîyayîşê mi 1957 a. Ma pêro pîya new way û bira yîme. Ez dîyin a. Seba ke pîyê mi ê serran Kanîrêşe de memur bî, domanîya mi uca de vîyarte. Mektebo verên ê tirkan mi uca û Gêxî de wend. Mektebo mîyanên Dêrsim de, Mazgêrt û Çewlîg de qedêna. Dime ra, lîse û enstîtuya mamostayîye Çewlîg de wende, bîya mamosta. Serra 1979-1980 de, Dêrsim de, dewa ke girêdayîya Xozatî ya, dewa Kirnîge de, tenya yew serre mamostayîye kerde. Na serre seba ke cuntayê tirkan ê 12 êlule hukmê xo peyda kerd, seba kar û fealîyetê sîyasî ver ra mi mamostayîye terikne, bîya îlegal, vejîya koyan. Di serrî ke koyan de menda, payîzê 1982 de mi beşekerd û verî şîya welatê Yunanî. A serre ra nat welat ra dûrî ya, Ewropa der a. (dersiminfo)



# Bavê Felekê her li dil û zar e

Kendal Xamûrpe

Hunermendê kurd Mihemed Şêxo li Rojavayê Kurdistanê bi merasîman tê bibîranîn. Piştî koça dawî ya 24 salan Mihemed Şêxo li gundê Hilêliyê yê Qamişloyê tê bibîranîn. Mihemed Şêxo, di sala 1948'an de li gundê Xecokê yê bajarê Qamişlo hatiye dinyayê. Navê wî yê fermî Mihemed Salih Şêxmûs e. Şeş xwişk û şeş birayên wî hene. Şêxo pêşî li ber destê melayê gund dixwîne. Dawiyê diçe dibistanê. Heta pola 9'an li Qamişloyê dixwîne û paşê dev ji dibistanê berdide. Ji ber bavê Şêxo, bi muzîkê re eleqedar e, ew jî ji bavê xwe tesîr digire û meyla wî ber bi muzîkê ve diçe. Dema li Qamişloyê xwendekar e Aram Tîgran nas dike û meyla wî ya muzîkê hê zêdetir dibe. Mihemed Şêxo, piştî demekê ji bo di warê muzîkê de bi pêş bikeve berê xwe dide Beyrûd a Lûbnanê û li wir perwerdehiya muzîkê dibîne û 2 salan li Yekîtiya Hunermendên Lubnanê dixwîne. Pişt re têkilyê bi hunermend û komên muzîkê yên li Beyrûdê re datîne. Di salên 1970'yî de dema li Radyoya Bexdayê distrê, Rejîma Sûriyê tehamûl nake û wî sirgûnê Beyrûdê dike. Lê Mihemed Şêxo ji Beyrûdê vedigere û dîsa tê Sûriyê. Her wiha ji aliyê rejîma Baasê gelek caran tê girtin û rastî îşkenceyan tê.

Hunermendê kurd Mihemed Şêxo di zarokatiya xwe de malbata wî koçberî dibe û li gundê Xecokê bi cîh dibe. Li vir mirêbetiyê dike. Şêxo mezinê yanzdeh bira ye. Di salên xwe yê dibistanê da Mihemed Şêxo gelek hunermendên kurd nas dike. Ji bandora wan nêzikî muzîkê dibe û di sala 1969'an de dest bi dengbêjîtiyê dike. Ew salên xwe yên di navbera 1969 û 1972'yan li Lûbnanê ji bo xizmeta hunerê xerc dike û li Beyrûdê du sal dersên muzîkê distînê. Di sala 1972'an de bi hinek hevalên ji xwe rê bi navê Koma Serkeftin komek mûzîkê saz dike. Mihemed Şêxo 1973'an de derbasî Başûrê Kurdistanê dibe û li wir mîna hozan û şervanan kar dike, têkilî bi hunermendê kurd ên din rê saz dike. Paşê diçe Şamê, li wir kaseta xwe ya bi navê Ay Gewrê derdixe. Lê li wir dewleta Sûriyê Mihemed Şêxo rihêt nehêlê û gelek caran tê binçav kirin. Li ser wê yekê carek dîn berê xwe da Iraqê û di nav refên Pêşmergeyan de cîhê xwe digre.

**Hevrêtiya li gel Pêşmergeyan**

Li gel Pêşmergeyên Barzaniyan ji Başûrê Kurdistanê derbasî Rojhilat dibe û li wir kasetekê tomar dike. Li Rojhilatê Kurdistanê ji bilî karê xwe yê muzîkê çend salan mamostetiyê jî dike. Demek paşê rejîma Îranê jî Şêxo wek dijberê rejimê dihesibîne û di derheqê wî de biryara girtinê derdixe. Ji ber wê çendê Mihemed Şêxo piştî 11 salan carek din berê xwe didê Sûriyê û li wir bi hezkirineke mezin tê pêşwazîkirin. Dewleta Sûriyê ji têkiliya Mihemed Şêxo û gelê kurd aciz dibe û wî digrê, davêjê zindanê. Lê ev biryar jî dengê Şêxo nabirre. Ew stranên xwê yê herî baş li hepis û zindanan de dibêje û di kilam û stranên xwe de derd û kulên gelê xwe û daxwaz û baweriyên wan bi hunermendiyek bilind tîne ziman. Hunermend di sala 1983'yan de vedigere Qamişloyê û heta sala 1988'an de gelek berheman diafirîne.



**Xwedî muzîkeke rengîn bû**

Mihemed Sêxo bi stran, stîl û awazên xwe kartêkirineke mezin li muzîka kurdî kir û gelek stranên wî ji aliyê gelek stranbêjên kurd hatin şîrovekirin û gotin. Bi deng û awazên xwe, kilam û stranên xwe jiyan û hunera gelê kurd dewlemend kir. Mihemed Şêxo bi giştî 14 kasêt amade kirin. Berhemên wî li hemû parçeyên Kurdistanê hatin belavkirin. Mihemed Şêxo ku yek ji strana wî ya herî bi nav û deng Ay lê Gulê ye, gelek stranên din yên nas û hezkirî bi deng û awazê xwe xist guh û devê guhdaran. Piştî mirina hunermendê mezin, kasetên wî li gelek cihan ji nû ve hatin derxistin û bi vî awayî bêmiriniya wî xwe nîşan da. Mihemed Şêxo, di muzîka kurdî de bi reng û dengê xwe yî cihê gelek berhemên bêhempa li muzîka kurdî ya otantîk zêde kirine û her wiha bi vê muzîka xwe di muzîka kurdî de cihekî zexm girtiye û di muzîka kurdî de her wek "Bavê Felekê" tê nasîn. Mihemed Şêxo di 9'ê Adar 1989'an de jiyana xwe ji dest dide û li gundê Hilêlê tê veşartin. Di muzîka kurdî de hin stranên ku Mihemed Şêxo strîne û bi wî navdarbûne ev in: "Ay Lê Gulê, Hebs û Zindan, Dil Perîşan, Aman Dilo, Dilkuştiyê Çavên Te..."

# Yaşar Kaya koça dawî kir

Siyasetmedar û rewşenbîrê kurd Yaşar Kaya di 78 saliya xwe de li Hewlêrê koça dawî kir. Yaşar Kaya di sala 1938'ê li bajarê Qersê ji dayîk bibû. Siyasetmedar, niviskar, rojnamevan û lêkolînerê kurd Yaşar Kaya, ji salên 1950'yî heta dawiya emrê xwe jiyana xwe di nav tekoşîna netewî de borand. Di sala 1959'an de di 19 saliya xwe de di Doza 49'an de hat girtin. Di sala 1963'an de wek berpirsiyarê Govara Dengê kar kir. Di sala 1963'an de di Doza 23'yan de hat girtin û sirgûnkirin. Di sala 1992'an de bû xwediyê rojname ya Özgür Gündemê û di sala 1993'an de jî bû serokê DEP'ê. Derheqê wî de bi sedan doz hatin vekirin û ji neçarî derket sirgûna Ewropayê. Di salên Ewropayê de ji Serokatiya Parlamena Kurdistanê ya Sirgunê Ya Dervayê Welat kir û paşê jî rêvebiriya KNK'ê kir. Yaşar Kaya di sala 2015'an de vegeriya Tirkiyê û li Stenbolê bicîh bû.

**Yaşar Kaya pêşengiya siyasetê dikir**

Siyasetmedarê kurd sala 1959'an dema li Zanîngeha Stenbolê beşa aboriyê dixwend bi 49 kesên wek gel Canip Yıldırım, Tarık Ziya Ekinci, Musa Anter, Mustafa Raman, Naci Kutlay û zanayên din ê kurd hat destgîrkirin. Ew jî weke endamekî nifşê 49'an tê zanîn. Demeke dirêj hat darizandin û cezayê zindanê lê hat birîn. Doz û fişarên siyasî rê li ber xwendina Kaya digirt. Kaya di 1968'an de zanîngehê kuta kir. Her wiha Kaya li Stenbol gelek kargehan xebat kir û di nava tekoşêrên siyaseta kurd de cihê xwe girtiye. Yaşar Kaya yek ji damezrênerê Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê yê. Li gel keda di ber saziyan de Kaya di sala 1993'an de bû Serokê Partiya Demokrasiyê (DEP) û demeke dirêj di nava siyaseta kurd de cih girt. Partiya Demokrasiyê, DEP di sala 1994'an ji aliyê dewletê ve hat girtin. Kaya ji ber doz û xebatên siyasî, neçar ma çû Ewropayê û li wir keda di der gelê kurd û Kurdistanê de domand. Yek ji damezrênerê Parlamentoya Kurdistanê ye demeke dirêj li Ewropayê bi karên siyasî re eleqdar bû. Yaşar Kaya li gel wan saziyan gelek kar û alîkariya saziyên Kurdistanê jî kir. Yaşar Kaya ji paş xwe ve bi 10'an zêdetir behrem pirtûk û bi sedan makale nivîsîne û jiyaneke her kêliyên wê bi xebat ji kurdan re hişt. Mirina Kaya xemgîniyeke mezin bi gelê kurd re peyda kir. Lewre wî her tim doza yekgirtin û hevgirtina kurdan dikir û yekane awata wî ew bû ku hevgirtina kurdan bibîne.

**Li Goristana Şehîdan hat binaxkirin**

Piştî bi dawîbûna qedexeyê cezayan Kaya di Nîsana 2015'an de vegeriya Tirkiyê. Her wiha Kaya di 9'ê Adarê de ji bo serdanekê çi bû Hewlêrê û li wir koça dawiyê kir. Ji ber rewşa aloz a li Bakurê Kurdistanê Yaşar Kaya di 12'ê Adarê de li Goristana Şehidan ku li ser riya Koyê hat veşartin. Di mersîmê de nûnerên Serokê Herêma Kurdistanê, Serokwezîrê Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê amade bûn.



# Azar a ku di Adarê de bidawî bû







Li Başûrê Kurdistanê ev pêvajoya ku niha ber bi serxwebûnê ve dimeşe, di Adar a sala 1991'an de bi raperineke gelêrî destpêkir. Piştî ku rejima Baas êrişê Kuweytê kir û ji aliyê hêzên navnetewî şikestek mezin xwar û vekişiya li seranserê Iraqê û bi taybetî li Kurdistanê li dijî rejimê serhildanan destpêkir. Dema serhildanê hêzên Pêşmerge ku gelek ji wan li kampên Bakûr û Rojhilatê Kurdistanê diman, bi lezgînî vegeriyan welat û pêşengiya serhildana gel kirin. Di serhildanê de fûrsanên ku demeke dirêj bi zorê bi rejimê re hevkarî kiribûn jî li hin deveran roleke sereke lîstin.

Gelê Başûrê Kurdistanê 5'ê Adara sala 1991'ê li dijî rejîma Baas dest bi raperînê kir. Raperîn di 21'ê Adarê de, roja Newrozê bi rizgarkirina Kerkûkê gehişte serkeftinê. Raperîna Başûrê Kurdistanê yek ji serkeftina herî mezin a kurdên Başûr ya li dijî dagirkeriya dewleta Iraqê û rejîma Baasê ye.

Piştî Şerê Kendavê û agirbesta 28'ê Sibata 1991'ê, gelê Iraqê û Kurdistanê li hember rejîma Saddam Hûsên serîhildan. Di 1'ê Adara 1991'ê li başûrê Iraqê li bajarê Besrayê serhildana Şieyan destpê kir. Ji bo çewisandina vê serhildanê rejîmê hêzên xwe ji bakûr vekêşandin bo başûr. Ev yek jî ji bo kurdan bû derfetek mezin.

Di 5'ê Adarê de bi bangawaziya hêzên Pêşmerge û dezgehên ragihandinê, gelê navçeyên Ranya û Qeladizê dest bi raperînê kirin. Di demek kurt de bi deh hezaran kes rabûne ser piyan û hêzên rejîmê û saziyên wê veder kirin. Pêlên serhildanê li Ranya û Qeladizê destpê kir û roj bi roj li tevahiya Başûrê Kurdistanê belav bû.

Roja 5'ê Adarê li gel Ranya û Qeladizê, bajarokên Sengeser, Çarqurne, Hacîava û Serkepkanê û herwiha Deşta Bitwên hatine rizgarkirin.

Roja 6'ê Adarê çirûska raperînê gehişte deşta Silêmaniyê û Bazyan û Pişder serhildan kirin û herêm ji hêzên dagirker paqij kirin.

7'ê Adarê gelê bajarê Silêmaniyê rabû serpiyan. Li gel Silêmaniyê navçeyên Çemçemal, Erbet, Zarayan û Pîremegrûnê raperîn kirin. Herwiha gelê Halepçe û navçeyên wê jî bi raperînê hêzên rejîma Baas vederkirin.

Roja 8'ê Adarê Hêzên Pêşmerge rêya Silêmaniyê û Kerkûkê kontrol kirin. Ev pêngav ji bo misogerkirina serhildanê gavek mezin bû.

Roja 9'ê Adarê jî navçeyên Koysancaq, Teqteq, Qereencîr, Şeqlawa û Basirmê rabûn serhildanê. Di heman rojê de pêla serhildanan gehişte navçeyên Hewlêrê. Gelê Soran, Hac Umran, Mêrgesor, Çoman, Xelîfan, Herîr, Mesîf û Spîkê herêmên xwe rizgar kirin.

11'ê Adarê roja raperîna gelê Hewlêrê bû. Di heman rojê de li navçeyên Kesnezan, Bineslawa, Daratû, Qûştepe, Şawês, Pîrzîn, Mele Omer, Topzawa, Cedîdê, Kevirgoskê, Behrikê û Berhêştirê hêzên rejîmê ji herêman hatin vederkirin.

12'ê Adarê li Xaneqîn û Celewla raperîn bû. Di heman rojê pêl raperînê gehişte navçeyên Duhokê. Navçeyên Akrê, Bêcil, Berdereş, Zîrebar û Şêxanê û herwiha herêma Sûrçiyan gel dest bi raperînê kir.

Roja 13'ê Adarê raperîn gehişte Zaxo û Silevanê. Li herêma Germiyan jî Kelar û Kifrî ji destê hêzên rejîma Baas hatin rizgarkirin.

Gelê Duhokê 14'ê Adarê rabû serpiyan. Navçeyên Zawîte, Sersing, Derelûk, Şeladizê, Amêdiyê û Bamernê jî serhildan bi serkeftî bû.

Roja 15'ê Adarê jî navçeya Sêmêlê, bajarokê Domîz û Feydiyê raperîn bû.

Piştî Duhokê gelê herêma Kerkûkê dest bi raperînê kir. 16'ê Adarê navçeya Mêxmûrê a ser bi bajarê Mûsilê, 17'ê Adarê navçeyên Kerkûkê Qereçûx û Serbeşax û 18'ê Adarê de jî navçeya Pirdê ya Kerkûkê tevlî raperînê bû.

Herêma Kerkûkê roja 19'ê Adarê dest bi raperînê kir û roja 20'ê Adarê jî gelê bajarê Kerkûkê li dijî hêzên rejîmê rabû. Roja Newrozê, an ku 21'ê Adara 1991'ê li navenda bajêr agirê Newrozê hate vêxistin.

Ji 5'ê Adarê heta 21'ê Adarê gel û Pêşmergeyan seranserê Başûrê Kurdistanê ji destê rejima Baas rizgar kirin û destanek mezin tomar kirin. Bi vî raperînê li Kurdistanê destpêka serdemek nû destpêkir ku ew jî serdema serwerî û azadîya gelê kurd bû.

Raperîn teqîna hêrsa gelê Kurdistanê bû li dijî zulm û sitema yek ji mezintirîn dîktatorê dîrokê. Rejîma Baas nekarî bi hemû hêz û şiyana xwe li hember vîna gel xwe ragire û şikestinek mezin xwar. Jiber vê ev her sê hefteyên raperîna mezin li hemû deverên Başûrê Kurdistanê bi giyanekî netewî tê pîrozkirin û vejandin.











# Zarema bihara Avestayê ye!

Tekoşîn Mêrdînî




Li Kurdistanê di her qadên nivîskî de roj bi roj berhemên kurdî zêde dibin. Bi dehan weşanxane, pîrtûk, rojname, malperên li ser înternetê, yên li ser torên civakî û govar têne derxistin. Govara Zarema jî yek ji wan berheman e û bi pêşengiya Fahriye Adsay û Mehmet Şarman bi kadroyek ji 11 kesan pêk dihat hate derxistin. Zarema, govareke sînorê wê berfih e. Ji bilî wêjeyê sînema, huner, şano û zanistên mirovî jî di Zarema yê de cîh digrin û bingeha Zarema ji rexne û teoriyê pêk tê. Her wiha bi nivîskarên çar parçeyên Kurdistanê govareke civîna kurda ya nivîskî ye.

Dema govara Zarema dest bi weşanê kir endamên komxebatê di warê nivîsê de hîn nû bûn û di nav wan de kesên xwedî tecrubeyên dirêj tune bû. Fahriye Adsay a berdevkê komxebata govara Zarema ragihand ku têkiliya wê û govargeriyê bi govara 'Wêje û Rexne'yê destpêkiriye, lê di demek kirt de ew û hevalên wê bi navê Zarema yê govareke nû derxistine. Fahriye Adsay li ser govara Zarema ji BasNûçe'yê re axivî û got: "Herkes dikare binivîse û jixwe herkes govarekê jî derdixe, lê di wan govara de kûrahî û nerînên ji bo avakirina perspektîfên nû tunebû. Me jî li hember vê kêmasiyê xwest ku Zarema bibe sedema avakirina perspektîfên nû, nivîsên kûr û hin nerînên analîtîk û hînkirina tiştên nû." Adsay amaje bi wê yekê kir ku dema wan ji bo govarê li navan geriya ne dîtine ku hemû nav hatine bikaranîn, pişt re li Avestayê nerîne: "Jixwe Avesta ji îngilîzî min û İbrahim Bingöl wergerandibû tirkî û di rûpelên dawî de me wek ferhengekê jî nivîsandibû. Di wê ferhengê de gotina herî dawî 'Zarema' bû û wateya wê jî 'bihar' bû. Hem nav xweş bû hem dengê Zarema xweş dihat guhên me û bêje nebêje hinek bandora kevnbûn û têkiliya wê ya bi Avestayê re jî ev nav bo me balkêştir kir. Û ji ber wateya wê "bihar" ji bilî demsala vejînê nûbûnê jî tîne mirov, jixwe armanca me jî kovareke nû an cuda bû."

## Cudahiya Zaremayê

Fahriye Adsay di derbarê naveroka govarê de diyarkir ku Zarema ne tenê wêjeye ji bilî wêjeyê, nivîsên li ser civakê felsefeyê, zanîstê li ser helbest û sinemayê ya ku rasterast bi kurdan eleqeder e ew derdixin pêş. Car caran ew wergera hin nivîsan jî dikin ku rewşenbîr û xwînerên Zarema ji wan nivîsan sûdê bigrin. Adsay li ser babeta cudahiya Zarema ku ji govarên din jî wiha axivî: "Cudabûna herî mezin ya Zaremayê avakirina perspektîfek nû û ne tenê perspektîfek wêjeyî an zanistî, avakirina perspektîfek siyasî ye jî Zarema. Zarema govara gotara ye. Beriya Zarema jî hebû lê li gor me di warê nivîsên ku çand û rewşa me bi awayekî analîtik rexne bikin valahî an kêmasî hebû, an em ji govarê heye ne razî bûn, lê wek Zarema ji serî heta dawî tu govar ji gotara pêk nehatiye. Jixwe nivîsa gotaran di kurdî de nû ye." Adsay axaftina wiha domand: "Em dixwazin ku hemû xebatên me nû bin û tiştekî nû, ramaneke nû, analîzeke nû û perspektîfeke nû avabikin. Mixabin em kurd, me hîn jî mejîyê xwe ji mejiyê tirka veneqetandi ye. Rewşenbîrên kurd, siyasetmedarên kurd an siyaset û jîn a hemû civakê wek netewê me, mejîyên me jî di bin dagirkeriyê de ye. Edî mejiyê me gemari ye, divê em mejiyê xwe ji gemara kolonyalîzmê paqij bikin." Adsay daxuyand ku yek ji armancên Zaremayê ew e ku ew xwe ji bin bandora kolonyalîzmê rizgarbikin û ji bo wan ya herî girîng ew e hemû pekhateyên nivîskî bi vê perspektîfê derkeve hole û bê weşandin.

## Zarema û nivîskarên wê ciwan in

Nivîskarên Zarema ciwan in û ji aliyê fikr û ramanan dînamîk in û hewl didin xwînerên kurdî jî bikaribin di zimanê xwe de gotaran binivîsîn û nivîsan bi zimanekî teorîk û analîtîk bixwînin. Fahriye Adsay rave kir ku ew ê bixwe jî berê li tu derê nenivîsandibû û nivîseke wê tenê di govara Wêje û Rexne yê de hatibû weşandin, wekî din bi Zarema yê dest bi nivîsê kiriye. Adsay axaftina xwe wiha domand: "Hevalên komxebatê yên kedkar û bi rûmet Mehmet Şarman, Ümran Aran, Mêhdî Cafarzade, Burhan Tek, Zana Zeydînî, Mehmed Emin Cırık, Kübra Sağır, Ferzan Şêr û Hesenê Dewrêş dinivîsînin û Zarema yê geştir dikin.

Endamê komxebatê Mehmet Şarman jî ragihand ku ji ber haya ciwanan ji rojeva kurdan, ji kolanan heye û pêwendiyên bi ciwanan re heye dikarin ramanên xwe yên nû bi rojane bînin ziman.

## Naveroka Zaremayê

Kesêkî ku bixwaze Zarema bixwîne dibê kurdiya wî gelekî baş be û berê jî gelek tişt xwendibe. Lê ev jî heye yên ku Zarema têxin destê xwe û bixwazin bixwînin ji bo wan jî di govarê de beşeke bi navê 'Kinbeş' heye. Fahriye Adsay got ku ew kinbeşan ji babetên populer yên wek nûçe, hevpeyvîn û hin mijarên girîng ku di rojevê de demekê cîh girtinin pêk tên û bi zimanekê hêsan hatine nivîsandin û yên dixwînin jî aciz nabin. Bi taybetî xwendevanên wan yên ku tevgera kurdî û literatura kurdî nasdikin pêk tê. Adsay di derbarê ecibandina govarê de jî derbirî ku ew derfêtên wan çênebûye ew û xwînerên xwe werin bahev, lê yek bi yek an jî rû bi rû kes tu kesî nas jî nakin, ew li ser malpera wan, li ser torên civakî an jî bi peyaman re ecibandin û nirxandinên xwe ji wan re tînin ziman. Adsay wiha domand û got: "Mirov dikare bibêje ku bi dilekî paqij van nirxandinan dikin. Bi awayekî Zarema di girtîgehîn de gihîştiye destê girtiyekî û rojekê ji girtîgehîn ji me re nameyeke hat û di nameyê de pesnê Zarema didan. Rexneyên erênî dikirin û digotin govara herî biqalîte di nav govarên kurdî de Zarema ye. Yên ku ji me re nameyan dişînin em jî ji wan re govarê dişînin."

## Zarema netewperwer e

Adsay eşkere kir ku ji ber haya kurdan ji birînê hev tune û ew birînê xwe nasnakin, bi Zarema ew birînên xwe şanî hevdidin û didin nasîn. Armanca Zarema ew e ku xwe naskirin, wan nasikirin, hev naskirin, aso firehkirin û ji bo rewşenbîriyê jî avakirina zimanekî teorîk û kurdîfîzekirina têgehan nû ye ku ji bo êdî kes nebejê 'Heval ez kurdî ya vê gotinê nizanim, ez bi tirkî bibêjim'. Adsay axaftina xwe wiha berdewam kir: "Divê zimanekî me hebe ku di her warê jiyanê de me têr bike. Bi zimanê gel ên din netew nayê avakirin û bila baş were zanîn ku em wek govara Zarema netewperwerin û ji bo netewê xwe zimanekî ramanê ava dikin. Pirsgirêka me ne zimanê bav û kala ye. Pirsgirêka me nûkirina zimanê bavûkalên me bo hewcedariyên îro ye, me ev daniye ser milên xwe û bi vî awayî em alîkariya avakirina hişmendiya netewê xwe dikin. Jixwe hin kes bi sînema, bi wêje, bi pereyên xwe, bi çekên xwe û laşên xwe alîkariya netewa xwe dikin. Netewên xurt yên xwedî çandeke xurt in jî û em bi vî awayî dixwazin çandeke xurt ava bikin û wisa alîkariya netewê xwe bikin." Adsay ragihand ku govareke tenê li ser zanistî, yek tenê li ser wêje, yek tenê li ser sînema, yek tenê li ser çandê û her wiha ji bo babetekê tenê bi pîsporî govareke hebûya; lê mixabin tune ye û ji ber vê jî ew xwe mecbûr dibînin ku li ser her babetê dinivîsînin an jî nivîsan biweşînin.

## Taybetmendiyên hêja yên Zarema

Zarema di nav hemû govaran de bi rengekî cuda derdikeve pêş û xwe dide hezkirin. Adsay li ser taybetmendiyên Zaremayê jî wiha axivî: "Zarema mînak govar e ku li ser helbesta kurdî bi rexnegerî wek dosyayekê bi firehî cîh ji helbestê re veqetandiye. Her wiha li ser şanoyê jî ez bawer im ku tenê Zarema bi awayekî akademîk û teorîk nivîs weşandiye. Ji aliyekî din dîsa taybetî bi kurdî wek dosyayekê li ser Femînîzmê Zarema nivîsên teorîk û akademîk nivîsiye. Hejmareke me tenê li ser kolonyalîzmê bû û mirov dikare bêje ku cara yekem bi kurdî kolonyalîzm wisa bi berfirehî hatiye nivîsandin."

Adsay xwest ku xwînerên wan vê yekê jî baş bizanibin di Zaremayê de hevkariya rewşenbîrên Rojhilat û Başûr jî pir çêbûye û lêkolîner û nivîskarên weke Berzo Elîasi, Farangîs Ghaderî, Mahro Rashît Rostramî û Bextitar Secadî, Abdulxaliq Yeqûbî, Buşra Kesnezanî, Cemal Cebar Xerîb û Hendirên jî beşdarî li xebatên wan kirine.


Fahriye Adsay


Mehmet Şarman

Suna Alan

# Jiyana dîasporayê hunermendan pêş dixe

Reyhan Akgün

Kurdên li dîasporayê dijîn bi peşketineke mezin karê hêja dikin di derbarê muzîka kurdî de. Her wiha piştî koçberiya kurdan û bi cîhbûyîna li dîasporayê ji ber derfetên pêşketinê hunera kurdî jî para xwe wergirt û hunermendên kurd di her qadê hunerê de ji wan derfitan sûd wergirtin û di qadên navnetewî de deng vedan. Hunermend Suna Alan a kurd yek ji van hunermendên pêşketiye û di derbarê hunera xwe de wiha got: "Li Ewropa, mirov dikare li dîasporayê civaka xwe bi muzîkê; bêrîkirin, bîranîn û moralê xwe derbike. Ji aliyekî din ve jî mirov dikare nasnameya xwe û çirokên xwe ji gelên din re bibêje. Pirsgirêk jî dûrbûna ji çavkaniyên xwe, erda xwe û çanda xwe ye."




Hûn dikarin hinekî behsa xwe bikin? Kîngê, li ku derê hatine dinyê? Eleqeya we bi muzîkê re kengî û çawa destpê kir?

Ez li gundekî navçeya Kanîreşê bajarê Çewlîgê hatime dinyê. Ji heft xwîşk û birayan ya pênca me. Hîn ez 2 salî bûm malbata min ji ber hin pirsgirêkan koçî Îzmîrê kirine. Zarokatiya min jî di taxên kurd û elewiyan de derbas bû. Ji ber em elewiyên kurd bûn di malbata me de her kes bi awayekî ensturman bi kar dianî û stran digotin. Dema merivên me digîhiştin hev bi dorê jin û mêr li tembûrê dixistin û kilam digotin. Di wan deman de zaroktiya xwe de jî ez çavdêrekî baş bûm. Ji ber vê sedemê hê jî ew deng di bîra min de ne. Ji bilî vê di hin saziyên kurd de di çalakiyên polîtîk û hunerî de min cih girt. Ez jî ji wî nifşa ku dibêje; 'Ez fêm dikim lê nikarim biaxivim.' Ji alîyekî din ve jî bi stranan min kurdîya xwe pêş xist. Piştî perwerdehiya zanîngehê ya zimanê îngîlîzî ez li Londonê bicîh bûm û min giranî da ser karê mûzîkê û min perwerdeya şanê stend. Rêwîtiya min ya mûzîkê li Londonê bi gelên cuda, mûzîk û muzîkjênên cuda re berdewam kir. Aniha jî li Londonê di Koma Raye de xebatên xwe didomînim.



**Bi kîjan kelepora muzikê mezin bûyî?**

Ez bi kevneşopiya dengbêjiya Serhedê û bi muzîka kurd û elewiyan mezin bûm û di bin bandora muzîka fireçandiya Îzmîrê jî mam. Min li stranên radyo yên gel guhdardikir û bi vê bîranînê ez mezin bûm. Dema ku ez bi porê xwe yê kezî kû heta pişta min dihat û bi solên lastîk diçûm dibistanê mamosteyên min dixwestin ku ez sitranan bêjim. Ez bawer im ewil wan ez keşfkirim. Tê gotin welatê mirovan zarokatiya wan e. Piştî dibistana navîn bi serkeftinê derbasî liseyê bûm. Bi bîranînên zarokatiya xwe di gerînek çandê de bûm. Ev lêgerîna min ne siyasî be jî lêgerîneke vegera li ser çanda xwe bû.

**Ji bilî mûzîkê hûn bi çi re eleqeder dibin? Kîjan tarza muzîkê dikin?**

Di hin xebatên li ser mafên jin, derdor û mirovan de dixebitim. Peyamnêryê jî dikim û li nivîsîngeha hiqûqê jî dixebitim lê tu tişt wek muzîkê rihê min têr nake. Li Ewropayê ya ku min li ser linga digre muzîk e. Ji kîjan zimanî be dema ku deng hat min û bala min kişand ez li wê muzîkê guhdardikim. Lewra ew muzîk deriyê hin çîrokan jî vedikin. Bi giştî ez li stranên gelerî yên kurdî û protest dibêjin bi dengtînim. Ji bilî van ez bi ermenîkî, rumî û tirkî û sitranên gelên din jî dibêjim.

**Muzîka we ji bo kîjan beşa civakê ye ? Di stranên ku tu dibêje de bi taybetî çi peyaman didî û mijarên te çine?**

Ev ji lihevhatina xweşbûn û aşitiyê ya di zimanê muzîkê de ye. Ez bawer im bi vî awayî muzîka min ji bo ku yên xwe ji yên din dihesibînin re tê gotin. Hûn jiyana wan û çîrokên wan bi zimanê muzîkê ji wan re dibêjin û ev bi bandortir e. Ji ber vê yekê jî muzîk ne tenê hunere ji bo min, di heman demê de berpirsiyarî ye û bi vê berpirsyarî yê jî dive em tevbigerin. Êşên wan, jiyanên çandî, mexdûriyeta wan û çîrokên wan di bin pirsyarî li ser milên me ye û divê ji gelên din re jî bê gotin. Hûn ji vê kevneşopiyê hatine û nikarin pêşçav bikin û nebînin. Piştî erdheja Wanê û di pêvajoya şoreşa Rojava de an jî piştî qedexeya derketina kolanan ya li Cizîr ê Yusuf Şık ê ku bi teqînê weslên xwe wenda kiribû ji bo wan me konserên piştgiriyê lidarxistin û Yusuf Şık re jî protez ling û mil hat stendin ev jî berpirsyariyeke ji wana bû. Her wiha 'Platforma Têkoşînê ya Ji Bo Jinên Di Bin Destan De ji bo jinên Ezdî li Amedê wê Navenda Hêzkirin û Rehabîlîtasyonê di meha Nîsanê vekin. Ez û hunermenda hêja Tara Jaff em ê ji bo piştgiriyê konserekê lidarbixin.

**Hûn ji kîjan tarza muzîkê hezdikin û hunermendeke ku ji wek pêşeng an îdol dîbînin heye?**

Ez dikarim bêjim ku di muzîka min de rengên Kurdistanî û azadiya zayendî hikum dike û ez hunermenda kurd-ereb Tara Jaff wek îdol dibînim. Ew ji metirsiya navdarbûnê û qezenckirina pereyan dûr û tenê di aramiyê de bêdeng di rêya hunera xwe deye û ev ji bo min pir bi qîmet e. Ew sîleya ku muzîk ne pêşbirke li kezeba mirov dixe.

**We heta niha çima album amade nekirin?**

Niha albumên min tune ne. Ez li heviya pijîna xwe mam. Dibe ku min kêm jî dîtibe, lê di demek nêz de ez ê rêwitiya xwe di vê rêyê de bidomînim.

**Wek hunermendeke kurd li Ewropa hûn rastî çi astengiyan dibin an pirsgirêk derdikevin?**

Li Ewropa, mirov dikare li dîasporayê bi muzîkê; bêrîkirin, bîranîn û moralê xwe dikare bîne ziman. Ji aliyekî din ve jî nasnameya xwe û çirokên xwe dikare ji gelên din re bibêje, tenê pirsgirêkek heye. Ew jî ji dûrbûna ji çavkaniyên xwe, erda xwe û çanda xwe ye. Li welat bi rastiyan hîskirin û di nav van hîsan de bi hestên cuda afirandin û li Ewropa amûrên têkiliyên ve şopandin gelekî cudabûna hestan derdixe holê. Bi nerîna min muzîk zimanê xweşîtî û aşitiyê ye û ji bo kurdan jî rêya veguhastina çirokên me ye. Ez jî dixwazim di vê rêyê de di her qadê de dengê xwe bigîhînim her kesî.

**Di çend salên dawî de li welêt hin kanalên muzîkê vebûne hûn wan çawa dibînin?**

Zêdebûna qanalên zimanê kurdî lê bê axaftin û bê bikaranîn gelekî girîng e û qenalên muzîka kurdî zêde bibin jî baş e û cihê kêfxweşiye ye. Ne jiyana me mezinan gîhandina jiyana zarokan jî bi rêya muzîkê ve hem bi bandortir e hem hêsantir e. Lê belê zêdebûna qenalan ne bes e. Divê naveroka wan jî têr û tijî be. Ji xwe ciwanên me bi awayê arabesk, ji dayikbûne poşman û sûtal mezindibin, divê xebatên nerîna van ciwanan biguherînin.